# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL    Hejmar: 62    13 - 19 Tîrmeh 2015 basnews.com


Ümit Demir

## Erebesk xerabmalî ye



R16





# Pêşmergeyên Rojava wê vegerin?

Nîqaşên di navbera siyaseta kurd a di derbarê vegera Pêşmergeyên Roj yên hêza ENKS'yê de gihiştin asteke nû. Xebatên vegera Hêza Roj a bo Rojava, bi civîna ku li Qendîlê bi rayedarên KCK'ê re pêk hat berdewam e. Rêveberiya KCK'ê bo vegera Pêşmerge nêzikahiyeke erênî ya bi şert nîşan da, lê belê PYD'ê jî nerazîbûna xwe diyar dike.

Sekretertê Giştî yê Partiya Demokrata Kurdistana Sûriyê Hemîd Hecî Derwêş dibêje ku Bayık dixwaze bi Barzanî re hevdîtinekê pêk bîne û di navbera Pêşmerge û YPG'ê de hemahengiyê durist bike. Derwêş ragihand ku Mesûd Barzanî jî hevdîtîna bi Bayik re qebûl kiriye û ew ê di kurtedemekê de hevdîtin di navbera wan de pêk were.

R02 - 03

## Êzdî ji welat û ji hemû bihûştan derbûn

R10

## Jin bi dûkela tenûrê Amedê şiyar dikin!

R13

## "Divê herkes li Amedê xwedî derkeve"

Piştî biryara bicîhbûna Sûrên Amedê û Baxçeyên Hevselê di lîsteya UNESO ya Mîratên Cîhanê de li bajêr kelecan û kêfxeşiyê olan da. Lê niha pirs ew e ku wê ew biryar bo Amedê çi bîne û çi bibe.



R08 - 9

## Serxwebûna aborî!

Li RHK'ê nîqaşên serxwebûnê ku bi êrîşên DAIŞ'ê re sist bibûn, piştî ku li hemû eniyan Pêşmerge qontrol bidestxist ji nû ve destpêkir. Li aliyê din gava herî girîng ku weke erefeya serxwebûnê tê binavkirin jî hat avêtin. Kurdistan êdî nefta xwe bi xwe difroşe û li herhêmê serxebûna aborî hat ragihandin.

R04 - 5

# Peşmergeyên Roj li ben

Xuya ye ku şerê li Rojava yê li hember DAIŞ'ê û paqişkirina Girêspî, Ayn Îsa û hin cihên stratejîk dê teşeyeke nû li Rojhalata Navîn olan bide. Herwîha li gel vê yekê Tirkiye jî hewl dide ku li sînorê Rojava leşkeran bi cih bike û bi navê ewlekariyê li vir herêmeke tampon ava bike. Di gel vê yekê daxuyaniyên Emerîka yên li ser PYD'ê û YPG'ê ku wan weke 'şîrik' bi nav dikirin bûn sedem ku nîqaşên nû rû bidin. Li Rojava piştî bidestxistina Girêspî û rêlibergirtina DAIŞ'ê rêxistin lawaz bû û ber bi Rakkayê ve ve-kişiya. Her wiha êrîşa DAIŞ'ê ya li ser Kobanê dîsa hevkarî û hevgirtina kurdan anî rojevê. Wek tê zanîn derbasbûna Pêşmergeyan a ji bo Kobanê bibû cihê heviyê ku dê eniyeke Kurdistanî ava bibe. Niha jî çav li rê ye ku Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê yên ku bi salan e li Başûrê Kurdistanê per-werde dibin derbasî Rojava bibin û di parastina Rojava de cih bigrin.

Herçend danûstendinên li ser mijarê yên bi rayedarên KCK'ê re baş bi encam bûbin jî siyasetmedar û fermandarên YPG'ê eşkere dikin ku hêzeke bixwaze derbasî Rojava bibe divê têkeve bin fermana YPG'ê û eger na wê hatina wê hêzê weke hinceta şer bihesibînin. Her çend rayedarên KCK'ê bi şert ji derbasbûna Pêşmergeyan bêjin ,êrê' jî fermandar û siyasetmedarên PYD'ê yên ku weke muxatab hat-ine destnîşan kirin didin eşkere dikin ku derbasbûna Pêşmerge ya bo Rojava tê wateya şer û ew ê destûra vê yekê nedin.

Piştî rizgarbûna Kobanê ya ji hêla hêzên kurd ve bi tifaqa hêzên kurd û Burkan el Firadê li hember DAIŞ'ê êrîş hatibûn destpêkirin û hêzên kurd ji pozîsyona parastinê derbasî êrîşkirinê bibûn. Herwiha li derdora Kobanê û Cizîrê hêzên kurd derbeyên giran li DAIŞ'ê dabûn û bi tevahî DAIŞ ji Rojava hatibû feşkilandin. Li hêla din DAIŞ'a ji qada şer dibeziya û xwe li Rakkayê bi cih kir. Herwiha berdewamiya operasyona paqijkirina DAIŞ'ê de DAIŞ'ê êrîşî Kobanê kiribû û di encama êrîşa DAIŞ'ê de zêdeyî 200 kesî jiyana xwe ji dest dabû û bi sedan kes jî birîndar bibûn. Di derbarê derbasbûna endamên DAIŞ'ê ya Kobanê de nîqaş berdewam dike û li gor hin angaştan endamên DAIŞ'ê ji ser Tirkiyê derbas bibûn û heta derketibû holê ku hin endamên Burkan el Firadê yê bi Artêşa Azad a Sûrîyê ve nin ji Burkan el Firatê veqetiyane û wan di êrîşan de cih jî girtine.

Li aliyê din êrîşên DAIŞ'ê yên ser Hasekê li bajêr tehribateke mezin pêkanî û bû sedema pêleke nû ya koçberbûna



xelkê bajêr. Nebûna hêzên pispor ê YPG'ê, durûtiya hêzên ereb a li hember YPG'ê nebûn û neparastina xelkê ya ji hêla rejimê metirsiyê tine ser jiyana xelkê Rojava.

**Peşmergeyên RHK'yê ji bo Başûr amade ne**

Çûna Pêşmergeyên Başûrê Kurdistanê di dawiya vê êrîşê de dîsa hat rojevê. Her wiha Fermandarê Yekîneyên Gulan Mensûr Barzanî, serê li Wezareta Pêşmergeyan dabû û dabû zanîn ku ew di şerê li hember DAIŞ'ê de xwedî azmûnin û ew amadene derbasî Rojava bibin. Êrîşa dawî ya li ser Kobanê bû sedema niqaşan û rêkeftina YPG'ê ya bi komên tûndrew ê îslamî re hat rexnekirin. Li hêla din dengê pêkanîna eniyeke kurdistanî dîsa berz bû. Di vê çerçoveyê de çûna Pêşmergeyên Rojava di rojeva Kurdistaniyan de ye. Pêşmergeyên Rojava demek dirêj e li Başûrê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê şer dikin û heta niha gelek serkeftin tomar kirine. Hem daxwaziya partiyên siyasî yên ENKS'ê hem jî dax-uyaniyên hin fermandaran bûn sedem ku çûna Pêşmergeyan bê rojevê û bê nîqaş kirin. Her wiha gel-ek fermandarên Pêşmergeyên Rojava yên li eniya şer in daxwazkirine ku biçin Rojava û li wir di para-stina Rojava de cih bigrin. Li hêla din partiyên di bin banê Partiya Pêşverû ya Kurdistana Sûriyê denin li ser meseleyê gelek danûstendin pêk anî.

**Li Qendîlê hevdîtin**

Di vê çerçoveyê de Sekretertê Giştî yê Partiya Demokrata Kurdistana Sûriyê Hemîd Hecî Derwêş û Berpirsê Enformasyon û Ewlekariyê yê Herêma Kurdistanê Lahur Talabanî digel şandeyekê serdana Qendîlê kirin. Desteyê bi Hevserokê Komeleya Civakên Kurdistanê bi Cemîl Bayik re hevdîtinek pêk anîn. Deste beriya ku bi Bayik re danûstendinan pêk bîne bi Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Bar-zanî re civiya û agahî dan Barzanî. Hat zanîn ku civîna bi Bayik re ya li Qendîlê pêk hatiye gelekî erênî ye û Bayik eşkere kiriye ku ew dixwaze li ser meseleyê bi Barzanî jî re biaxive. Çave rê tê kirin ku piştî hemahengiya bi YPG'ê re Pêşnerge derbasî Rojava bibin. Li hêla dain jî hat zanîn ku Bayik gotiye; "Eger em bi Barzanî re rûnên û em li hev bikin ji bo derbasbûna Pêşmergeyan tu arîşe namînîn."

**YNK jî dixwaze Pêşmerge derbas bibin**

Li seranserê Kurdistanê dîsa yekgirtina neteweyî hat rojevê û Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) jî hemahenge da ku Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê vegerin mala xwe û li gel YPG'ê di parastina Ro-java de cihê xwe bigrin. Li hêla din hat zanîn ku Barzanî jî daxwaza Bayik a hevdîtinê qebûl kiriye û ew ê di demek nêz de hevdîtin pêk were.

**Barzanî gotibû 'amade bin'**

Weke ku tê zanîn di dema êrîşa Kobanê de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji fermandarên Pêşmergeyan re daxuyandibû ku amade bin egera wê heye ku ew dîsa herin Rojava û di parastina wê de cih bigrin. Proseya bi fermanê hatibû dest pê kirin niha ber bi encambûnê veye û di wê çerçoveyê de pêngavên giring hatin avêtin.

**Hecî Derwêş: KCK erênî ye**

Sekreterê Giştî yê Partiya Pêşverû ya Kurdistana Sûriyê Hemîd Hecî Derwêş ji BasNûçe'yê re axivî û tekez kir ku ew Berpirsê Enformasyon û Ewlekariyê yê Herêma Kurdistanê Lahur Talabanî û şandeyekê çûna Qendîlê û wan bi Hevserokê KCK'ê Cemîl Bayik re hevdîtin pêk aniye. Hemîd Hecî Derwêş amaje bi wê yekê kir ku Bayik çûna Pêşmergeyan a ji bo Rojava erênî dibîne û beriya der-basbûna Pêşmergeyan ew dixwaze bi Barzanî re hevdîtinekê pêk bîne û hemahengiyê durist bike di navbera Pêşmerge û YPG'ê de. Di berdewamiya axaftina xwe de Derwêş ragihand ku Mesûd Barzanî jî hevdîtina bi Bayik re qebûl kiriye û ew ê di kurtedemekê de hevdîtin di navbera wan de pêk were.

**Asya Abdullah: Em nahêlên tu hêzek bê Rojava**

Hevseroka PYD'ê Asya Abdullah jî di terheqê mijarê de pirsên rojnameya me bersivand û şandina Pêşmergeyên Roj weke propagandaya PDK'ê binavkir. Ab-

# da vegerê ne

dullah da zanîn ew nahêlin ku bêyî YPG'ê tu hêzeke din li Rojava bi cîh bibe û wiha dirêjî da axiftina xwe; "Meseleya şandina Pêşmerge demeke dirêj e li Başûr di rojevê de ye û ew propagandaya PDK'ê ye. Li vir rêveberiya xweser heye û îradeyeke wê heye. Heke hêzek bê vir bi şertê ku di bin bana YPG'ê de bimîne emê qebûl bikin. Wekî din em nahêlin ku tu hêzek li vir bi cîh bibe. YPG'e li vir serhildanek meşand, gel û rêveberiya xweser diparêze. Bo vê jî bêyî heza xweseriya demokratik ti hêzek nikare li vir bimîne. Divê herkes zanibe ku ti hêzeke leşkerî nikare li vir bimîne. Ti nîqaş û xebatên me yên di derbarê avakirina hêzeke hevpar de nîn e. Me ew mesele nexistiye rojeva xwe. Hin gotinên ku di navbera KCK û hin aliyên din de hevdîtin hatine kirin têne guhê me jî lê me xebatek wiha nîn e.

**Rêvebiriya kantonan: Bila Pêşmergeyên Rojava neyên!**

Derbasbûna Pêşmergeyan li hêlekê tê nîqaşkirin û li hêla din jî Komeleya Malbatên Şehîdan û Kor-dînasyona Giştî ya Rêveberiya Kantonan daxuyanî belav kirin ku ew li hember derbasbûna Pêşmer-geyan in û ew nerazîne ku Pêşmerge derbasî Rojava bibin. Komeleya Malbatên Şehîdan di daxuyaniya xwe de ragihand ku ew derbasbûna Pêşmergeyan weke rûniştina li ser mîrata YPG'ê binav dikin. Her wiha di berdewamia daxuaniyê de amaje bi wê yekê jî hat kirin ku "Partiyên ne bi ser Rojava ve bin û bi ser hin derên din ve ne divê dev ji wê siyaseta bê wate berdin." Û ew ji bilî YPG'ê tu kesî li Rojava weke şervan nahesibînin.

Di berdewamiya daxuyaniyê jî de ev yek hatibû tomar kirin: "Di demên dawî de hin deng belav dibin û dibêjin bila 'Pêşmerge derbasî Rojava bibe.' Pêkhatina vê yekê ne mimkûne. Eger derbasbûna wan çê bibe jî bi tenê ew dikarin di bin banê YPG'ê de bin. Weke malbatên şehîdan em ê destûra wê yekê nedin kul i Rojava du hêzên ji hev cûda hebin.Eger ew kesên dixwazin bên Rojava li Rojava şer bikin dikarin têkevin bin banê YPG'ê û di bin al û fermandariya YPG'ê de şer bikin. Weke malbatên şehîdan em ê destûra wê yekê nedin ku ew kesên ji bo xelkê Rojava tu tişt nekirine bên Rojava û li li ser destkeftiyên xwîna zarokên me rûnên. "

Li hêla din Kordînasyona Rêveberiya Giştî ya Kantonan jî li ser derbasbûna Pêşmergeyan daxuyaniyen belav kiribû. Di daxuniyê de ev yek hatibû tomar kirin: "Di hin malperên çapemeniyê hatiye îddîa kirin ku Rêveberiya Xweseriya Demokratîk û Herêma Kurdistanê di der barê derbasbûna komên çekdar ê bi navê 'Pêşmergeyên Rojava' li hev kirine û dê ew kom derbas binin ne rast in. Ew nûçeyên ne rast belav dikin."

Kordînasyona Rêveberiya Kantonan a ji Efrîn, Kobanê û ji Cizîrê pêk tê îddîayên ku ew ê Pêşmerge derbasî Rojava bibin derewand û wiha gotibû: "Em ji raya giştî ya gelê xwe û cihanê re eşkere dikin ku tu tiffaqa me tuneye. Hêzên me YPG/YPJ, Hêzên Asayîşa Rojava Hêzên Parastinê û hemû hêza me dikarin Rojava û xelkê wê biparêzin." Her wiha di berdewamia daxuyaniyê jî de wiha hatibû gotin: "Em ji hemû biraderên xwe yên kurdistanî daxwaz dikin ku tevlî karê navxweyî yê Rojava nebin û di peywendiyan de rêzgirtinê esas bigrin. "

**Hekim Xalo: Eger ew ê beşdarî YPG'ê bibin bila werin**

Di vê navberê de Hevserokê Rêveberiya Meclîsa Zagonsaz a Cezîrê Hekîm Xalo jî di derbarê çûna pêşmergeyan de ji rojnameya me re axivî. Xalo bal kişand ser pevçûna navxweyî û dest nîşan kir ku eger hêzêk bixwaze were Rojava ew dikar di bin banê YPG'ê de were û bi awayên din ew destûra wê yekê nadin. Di berdewamiya axaftina xwe de Xalo bang li PDK'ê û KCK'ê jî kir ku divê ew rêzê li îradeya 'rêveberiya xweser' a Rojava bigrin.

Her wiha Xalo eşkere kir ku Pêşmergeyên Rojava bi salan eli Başûr perwerde bûne û di dema azadkirin û avakarina Rojava de wan rola xwe nelîstiye û ew ê qebûl nekin ku ew weke hêzêke ser-bixwe bên li Rojava bi cih bibin. Xalo destnîşan kir ku hemû kes dikare were Rojava û di parastina wê de cih bigre û wiha berdewam kir: " Derbasbûna cihekî ku ked lê hatiye dayîn û bedel lê hatiye dayîn weke lê xwedî derkatina zarokekî hin kesa ye. Deriyên Rojava ji hemû kesî re vekirine. Her kes dikare were û di parastina wê de cih bigre kesî nikare li hember vê yekê raweste. Xetereyên mezin hene. Îro hêzeke navê wê û dengê wê li hemû dinyaê belavbûye heyê li vê derê. Qehremaniyê nîşan didin. Ewqas şehîd dane û ji bo mirovahiyê şer dikin. Îro hêzên navdewletî bi wan re din ava tiffaqê dene. Ew hêzên behsa wan tê kirin hemû dikarin werin û tevlî YPG'ê bibin. Lê belê bi siyaseteke din û navekî din werin ew ê xetere durist bibe ji bom e. Ew ê nakokî pêk were. Ji bo derbasbûna Pêşmergeyan zemîn nehatiye ava kirin. Pêşmergeyên behsa wan tê kirin bi ser ENKS'êye venin. ENKS yek ji perçeyê îthtîlafa Sûriyêye. Her im êrîşî YPG'ê dikin. Ew ê destûrê ji rejima Sûriyê bistînin û wisa werin.Em di-zanin ku ENKS bi Tirkiyê jî re din av peywendiyan deye. Weke şirîka nin. Îro Tirkiye dixwaze vira dagir bike. Hatina wê hêzê ew ê bê çi wateyê. Eger bên û di nav YPG'ê de cih bigrin em ê ji hatina wan kêfxweş bibin."

**"Artêşa Azad mêvan e, Pêşmerge ji vira ne, ew ê arîşe derkevin"**

Dema me ji Xalo re bi bîr xist û got, "Artêşa Azad û yekîneya Burkan el Firatê jî ne bi ser YPG'êye ven-in xw ew jî li gel YPG'ê bi navê xwe û serbixwe şer dikin." Xalo da zanîn ku ew hêzên ereban in xw ew li Rojava mêvan in. Û şensa wan tuneye ku ew li wir bi cih bibin û mayînde bibin. Xalo woha domand: "Ew bîrayên me nin. Li gel me şer dikin. piştgiriya me dikin em jî alîkariya wan dikin. Em jî ji bo wan şer dikin. Ew hêza wan tuneye ku hevsengiya li vira biguherînin. Lê belê Pêşmerge ji vira ye û ew ê li vira bi cih bibe. Lewre ew ê bibe sedem ku nakokî li vira durist bibin."

Xalo li ser erêkirina KCK'ê û helwesta wê jî rawestiya û anî ziman ku ew spasiya KCK'ê û PDK'ê dikin û rêz li hesasiyeta wan digrin. Lê belê li Rojava rêveberiyek heye û îradeyek heye û ew nabêjin ew wan qebûl nakin ew dibêjin eger Pêşmerge hatin divê bên û derbasî bin banê YPG'ê bibin. Xalo gotina xwe wisa bi dawî kir: " Bi tenê bi gotina KDP'ê û KCK'ê ev yek pêk nayê. Divê guh bidin îradeya vira. Divê rêza wan ji rêveberiya li vira re hebe.Eger bê peyman bê tedbîr werin ew ê bibe sedema pevçûna navxweyî."

**'Divê Pêşmergeyên Rojava li Rojava bin'**

Di derbarê derbasbûna Pêşmergeyan bo Rojava,rêveberê partîya PDKS'ê ku ni ser ENKS'êye, Mi-hemed Îsmaîl ji BasNûçe'yê re axivî. Mihemed Îsmaîl diyar kir ku Rojava mala hemû kurdan e û pa-rastina Rojava jî erka kurdan ya sereke ye. Îsmalîl da zanîn ku, civîna derbasbûna Pêşmergeyan a bo Rojava ya di navbera Sekreterê Giştî yê PDKS'eHemîd Hecî Derwêş û Hevserokê KCK'êCemîl Bayik de erenî derbas bûye. Îsmail axaftina xwe wiha domand: Di destpêka krîza Sûriyê û vir ve em dibêjîn ku 'Em Rojava bihevre biparêzin û birêve bibin, lêqananebûn.Bihewldanên SerokêHerêma Kurdi-stanêMesûd Barzanî hin peyman hatinçêkirin û hin pêşveçûnçêbûn. DivêPêşmegeyên Rojavali Rojava bin û parastina Rojava bikin."

**Li Rojava şer berdewam e**

Gengeşîyên derbasnûna Pêşmerge Rojava ji alîyekê ve dom dikin û ji alîyê din ve jî hevsengîyên şerê Rojavaroj bi roj digûherin. Piştî êrîşên DAÎŞ'êyên ser Kobanê û Hesekê, hêzên kurd operasyon dan destpê kirin û kontrola najarokê Ayn Îsa û gelek gûndên derdora Reqqayê ragihandinm. Pêngava binavê Rûbar Qamîşlo jî bidawî bû. Encamên pêngavêbi raya giştî re hatin parve kirin.

Ji Fermandarîyagiştî ya YPG Sozdar Dêrik, diyar kir ku pêngava fermandar Rûbar Qamîşlo biserketî bidawî bûye. Di encama pêngava ku 6'ê gûlanêji Cizîrê û Hesekê destpêkiribû ku Kobanê û Hesekê bihev ve hatibûn girêdan. 1472 endamên DAÎŞ'ê hatine kuştin. Hat ragihandin ku bi sedan gûnd u bajarok hatin rizgarkirin û qadeke 11 hezar km ji DAÎŞ'ê hat paqij kirin. Sozdar Dêrik diyar kir ku piştî Girespî hat rizgarkirin hêza DAÎŞ'ê a li wir şikest xwariye. Dêrik got ku 1472 endamên DAÎŞ'ê hatin e kuştin û tarmê 647'an di deste wan de ye. Sozdar Dêrik eşkere kir kudi encama opersyonê de, 139 şervanên YPG/J'êjîjîyana xwe ji dest dane.

**Li Hesekê şerê kolanan**

Li Hesekêşerê YPG û hêzên rejîmê yên li dijî DAIŞ'ê didomin. Pîştî dorpêça DAÎŞ'ê ya li ser Haseke, pevçûnên di navbera YPG'ê û hêzên rejîmê jî bidawî bûn û li dijî DAÎŞ'ê hevkarîyek hat avakirin. DAÎŞ'ê 3 Pûşper'ê êrîşî başûrê û başûrê rojavayêbajêr kiribû û xalên kontrole yên rejîmê bidest xisti-bû. Rojnamevan Sûad Xelo, bûyerên li Hesekê rû didin, ji rojnameya me re nirxand. Xelo diyar kir ku balafirên rejîmê li girtîgeha Ehdasan û li Taxa Neşwê , topxaneyek bombebaran kir. Sûad Xelo got ku endamên DAÎŞ'ê hatine dorpêçkirîn û DAÎŞ jî bi wesayîtên bombebarkirî erîşa pêktîn e. Xelo destnîşan kir ku li bajêrş erê kolanan dest pê kiriye û hêzên rêjîmê û hêzên kurd li dîjî DAIŞ'ê bihev re tevdigerin.



# RHK'ê serxwebûna aborî ragihand



Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK), di derbarê serxwebûnê ku demeke dirêj e hem di warê civakî hem jî di warê polîtîk de amadekariyên wê têne kirin, gavên pir grîng hate avêtin. Piştî ku DAIŞ'a ku serxwebûnê dereng xist ji alî Pêşmerge ve bi şêweyeke serkeftî hat qelskirin û asayîşa herêmê hate dabînkirin, rojev dîsa veguherî ser mijara serxwebûnê. Piştî ku di warê dîplomatîk de jî ji bo serxwebûna ku civaka Kurdistan bi giştî piştevaniya wê dike, zemîneke pêkan hate afirandin, êdî ji bo serxwebûnê astengeke grîng nema. Piştî israra DYA û hin welatên rojavayî ku RHK'ê şenseke din jî da Bexdayê, lê piştî ku Bexda vî şensî jî pêk nehanî û budceya herêmê neşand û rêyên diyalogê asteng kir, RHK'ê pengava 'Berbanga serxwebûnê' da destpêkirin. Li gor vê pengavê wê êdî petrola Kurdistanê ne bi regeza Iraqê, bi ya Kurdistanê arasteyî bazara navneteweyî bibe. Ev biryara ku di civîneke bala ya li Duhokê ya hefteya çûyî hate stendin, ji ber şensê dawî yê Bexdayê hatibû rawestandin. Piştî ku maweya vî şensî jî qediya, RHK'ê ne bi ser SOMO'yê bi serê xwe dest bi frotina petrola xwe kir û bi rêyên cuda arasteyî bazara deryayan kir. Wezîrê Petrolê yê Iraqê jî piştrast kir ku êdî petrola Kurdistanê ji SOMO'yê re naçe û vê yekê wek perçebûn û têkçûna Iraqê nirxand.

Li gel ku Bexda'yê ji sedî 17 para budceya Kurdistan ku salane 17 milyar dolar dike, neşand jî RHK'ê di van mercan de jî li dij DAIŞ'ê şerekî giran meşand û ji aliyê din ve jî hewl da ku bi milyonan penaberên ji şer reviyane herêma Kurdistanê hembêz bike û wan biparêze. Lê belê bêderfetiya aborî ya ku demeke dirêj e dom dike hate radeyeke pir dijwar. Ji bo çareserkirina vê qeyrana aborî tekane rê serxwebûn û rasterast frotina petrolê mabû û bi vê mebestê di civîna ku hefteya çûyî li Duhokê bi serokatiya Serokwezîrê RHK'ê Nêçîrvan Barzanî û beşdariya nûnerên hemû partiyên siyasî pêk hat de, biryar hate stendin ku wê Herêma Kurdistanê petrola xwe êdî bi serê xwe bifroşe. Lê belê ji ber ku nûnerên partiyên siyasî xwestin ku Hikûmeta Herêmê şensekî din jî bide Bexdayê, hikûmetê dîsa dest bi hewldanên diyalogê kir. Geşedanên dawî mîsoger dikin ku Bexdayê vî şensê dawî jî bi kar nehaniye. Lewre jêderên nêzîkî RHK'ê radigihînin ku RHK'ê ji 1'ê Tîrmehê bi şûn ve petrolê nedaye Şirketa Petrolê ya Neteweyî ya Iraqê(SOMO). Ev agahî ji alî Serokê Lijneya Petrol û Gazê ya Parlamena Iraqê Arez Abdulah ve jî hate piştrastkirin. Abdulah her wiha diyar kir ku RHK'ê êdî petrola xwe bi serê xwe difroşe û got: "Ev yek destpêka pengava perçebûna Iraqê ye."

**Kurdistan petrola xwe bi serê xwe difroşe**

Li gel hemû hewldanên RHK'ê, Bexdayê şertên peymana ku bi Hewlêrê re îmze kiribû bi cih nehanî û diyar bû ku qeyrana aborî ya heyî tenê bi ragihandina serxwebûnê dikare bê çareserkirin. Her wiha di serî de DYA û hevpeymanên wê, hemû hêzên navneteweyî li dijî serxwebûna Kurdistanê hewldaneke rikber nîşan nedan. Li gel hemû ev rewşên derfetdar jî, mirov dikare sedemê neragihandina serxwebûnê ya RHK'ê bi pêknehatina yekîtiya siyasî ya navxweyî ve grê bide. Lewre hewla YNK û partiyên din ên siyasî ku bi pestoya Îranê xwestin bi ser erka hilbijartina serokê herêmê ji gel bistînin û radestî parlamenê bikin û bi vî awayî serokek nû bidin hilbijartin wek nîşaneya pêknehatin û perçebûna yekîtiya siyasî ya navxweyî tê nirxandin. Li gel tunebûna yekîtiya siyasî jî, bi pêşengiya Barzanî daxwaza serxwebûnê bê kirin jî rêyên diyalogê jî nayêne girtin.

Di vê qonaxa ku qeyrana aborî di asta herî xeternak deye û bala hemû herêmê li ser geşedanên dîplomatîk ên navbera Hewlêr û Bexdayê ye, her dû alî û bi taybetî jî Bexda ji bo çareseriyê xemsariya xwe didomîne. Serokwezîrê Hikûmeta RHK'ê Nêçîrvan Barzanî, di derbarê qeyranê de xemsariya Bexdayê rexne kir û got: "Divê Bexda ji bo vê qeyranê li rêyên çareseriyê bigere. Ji ber vê yekê ji bo he hevdîtinan em ê lijne neşînin Bexdayê. Hevdîtinên berê yên ku me bi Bexdayê re pêk anîn bandoreke erênî li qeyranê nekirin. Ji ber vê yekê qeyran hatiye asta herî xeternak." Her çiqas qala naveroka wê neke jî Barzanî da zanîn ku wan pêşniyaza xwe ya dawî pêşkêşî Bexdayê kirî ey û li ser vê pêşniyazê hevdîtin didomin. Di çarçoveya peymana ku RHK'ê di 2'ê Kanûna 2014'an de bi Bexdayê re îmze kir de, RHK'ê ji Kerkûkê rojane 300 hezar varîl û ji herêmên din jî 250 hezar varîl petrolê, di bin kontrola SOMO'yê arasteyî Bexda û bi ser Tirkiyeyê ve arasteyî bazara cîhanê dikir. Li gel vê yekê pêwîst bû Bexda jî ji sedî 17 para budceya RHK'ê bişanda Hewlêrê. Lê belê Bexdayê şertên vê peymanê bi cih nehanî û tenê demên ku RHK'ê bertekên tûnd nîşan dida beşek piçûk ji para budceyê dişand Hewlêrê.

Berdevkê Hikûmeta RHK'ê Sefîn Dîzayî jî di derbarê mijarê de da zanîn ku ji ber qeyrana aborî ew bêçar bûn ku biryara aboriya serxwebûnê ragihînin û got: "Ji niha û pê ve em ê dikaribin mûçeyên Pêşmerge, karmend û xebatkaran bidin." Dîzayî angaşt ku wê Tirkiye ji frotina petrolê re nebe asteng û da zanîn ku Tirkiyeyê garantî daye ku ew ê şertên peymana ku bi RHK'ê re îmze kirî ye bi cih bîne. Dîzayî aşkere kir ku kiriyarên petrola Kurdistanê hene û got: "Ger plana me bi rêk bimeşe û em petrola xwe bifroşin, wê dahata vê petrolê bi şêweyeke zelal li Kurdistanê vegere."

**Hîmê aboriya serxwebûnê Kerkûk e**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, piştî hevdîtina bi Nûnerê Taybet ê Serokwezîrê Japonya Ûkî Okatomo ku pê re li ser geşkirina pêwendiyên RHK'ê û Japonya'yê û alîkariyên ku wê Japonya ji bo RHK'ê bike gotûbêj kir, derbasî Kerkûkê bû û bi Serkirde û Fermandarên Yekîneyên Pêşmerge yên Eniyên Kerkûk û rayedarên herêmî re civînek pêk anî. Di civînê de Barzanî destnîşan kir ku pergala siyasî ya RHK'ê pergaleke demokratîk e ku ji bo her kesî azadiya raman û jiyanê pêkan dike. Barzanî diyar kir ku Pêşmerge ne hêza partiyên siyasî, hêza parastinê ya Kurdistanê ye. Barzanî got: "Ji ber vê yekê, divê erka hemû partî û rêxistinan ew be ku hêzên Pêşmerge yekdest bibin." Di civîna ku bi Fermandarên Eniyên Kerkûkê re pêk anî de qala hewlên serxwebûnê jî kir û da zanîn ku êdî dewletên dinyayê ne li dijî serxwebûna Kurdistanê ne, berovajî DYA û gellek dewletên din ên hêzdar êdî bi dilgermî nêzîkî serxwebûna Kurdistanê dibin. Barzanî got: "Hêza ku dikare vê daxwazê pêkan bike Pêşmerge ye." Barzanî di axaftina xwe ya ku soza dabînkirina hemû pêdiviyên Pêşmerge da de, di derbarê milîşeyên Haşdî Şabî ku hewl didin li Kerkûkê xwe bi rêxistin bikin de jî da zanîn ku wê Pêşmerge rê nede ku li Kurdistanê ji bilî wî tu hêzeke din bi cih bibe.

## Mesrûr Barzanî:
# Wê serxwebûn pêk bê

Raveyeke din a ku bale dikişîne li ser biryardariya serxwebûnê ji Musteşarê Ajansa Ewlehiyê ya Kurdistanê Mesrûr Barzanî hat. Barzanî got ku weke miletên din mafê gelê kurd jî heye ku bi ser xwe bibe, em bo vê pir dişixulin û Kurdistan teqez wê bigihîje serxwebûnê. Barzanî ji Kurdistan TVyê re got ku serxwebûn karekî cidî ye, pêşnûmeyeke me derbareyê vê de heye, ji ber ku Iraq di vê rewşa hêyî de aniha welatekî perçebûyî ye divê vê fersenda dîrokî bê bikaranîn lê ji bo vî, divê hemû partî û derdorên Kurdistanî li ser vê babetê kîp bibin. Her wiha Barzanî diyar kir ku ji berê ve armanca sereke ya PDK serxwebûnê bû û ev daxwaza xwegihandina vê armancê her ku diçe zêde dibe.



**Nivîsandina destûrê didome**

Di destûra ku nivîsandina wê destpê kiribû lê ji ber nîqaşên şêweya hilbijartina serokê herêmê û amadehiya serxwebûnê hatibû piştguhkirin de, pêşketineke mezin pêk hat. Li gor agahiyên bidestxistî heta niha nivîsandina 41 zagonan hatiye qedandin. Wekîlê PDKyê û Endamê Lijneya Amadehiya Destûrê Ferset Sofî Mihemmed ji Basnûçeyê re axivî û got ku pêşniyara derbareyê şêweya hilbijartina serokatiyê de ku bi serektiya YNK û bi piştgiriya Tevgera Goran, Pirtiya Yekîtiya Îslamî ya Kurdistan (Yekgirtu) û Partiya Civaka Îslamî (Komele) bo şêwirandinê ji parlamentoyê pesend girtibû, xebatên Lijneya Amedehiya Destûrê dinicimîne lê digel vê jî lijne xebatên xwe didomîne û heta mêjûya ku tê pêşbînîkirin dê bê qedandin. Mihemmed, ji ber ku xebatên lijneyê dinicimînin û dibin sedema qeyraneke sîyasî rexne li partiyên vê pêşnûmeya zagonî pesend kirine kir û wisa axivî: "Hem di avakirina hikûmetê de hem avakirina Lijneya Amadehiya Destûrê de hem jî di parvekirina radeyan a li Bexdayê de partiyan giş bi awayekî tifaqkirî hatin cem hev û bi hev re tevgeriyan. Lê çima li ser babeta şêweya hilbijartina serokê herêmê ev pevratî hat piştguhkirin. Lê digel vî tiştî jî, hem gel hem jî aqilmendên van partiyan ku pêhesiyan ku ev helwest şaş e, bi vê şaşiyê hesiyan û bi encama zexmên van vê pêşnûmeya zagonî ji parlamentoyê dê were paşvekişandin. Ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê û biryargirtineke hevpar a li ser şêweya hilbijartina serokê herêmê hevdîtinên hemû partiyan berdewam dikin." Ferset Sofî Mihemmed bale kişand ku di 30'ê Tebaxê de wexta peywira serokatiyê ya Mesûd Barzanî dê biqede û got ku heta wê wextê heke ev pirsgirêk dê neye çareserkirin piştî wê mêjûyê dibe ku qeyraneke mezintir a siyasî dê peyda bibe.

Ferset Sofî Mihemmed anî zimên ku YNK serokatiyekê weke di çerçoveya pergala partamenterî de rayeyên wî hatine sînorkirin û ji hêla parlamentoyê ve tê hilbijartin pêşniyar dike, li hemberî vê em wek PDK serokatiyeke sembolîk a herêmî na, serokatiyeke wek rayeyên xwe yên hêyî diparêze û ji hêla gelî ve tê hilbijartin pêşniyar dikin. Mihemmed anî zimên ku Lijneya Amadehiya Destûrê heta niha nivîsandina 41 xalan qedandiye û got ku berî ku qewla 3 mehî ya nivîsandina destûrê bi dawî bibe dikare bê qedandin û li ser vê mijarê ew ê tengasiyekê nekişînin.

**Ji Amedê heta Xabûrê meşa piştgiriya serxwebûnê**

Piştî ragihandina Mesûd Barzanî ya ku piştî serdana Emerîkayê ya serê meha gulanê gotibû "Piştgiriyê bidin, serxwebûna Kurdistanê ragihînim" li her çar perçeyên Kurdistanê çalakî û daxuyaniyên piştgiriyê zêde bûbû. Di çerçoveya van çalakiyên piştgiriyê de Înîsiyatîfa Yekîtiyê ya PDKyê bi hilkefta piştgiriya serxwebûna Kurdistanê li Bakurê Kurdistanê ji Amedê heta Deriyê Sînor ê Xabûrê meşa piştgiriyê dê li dar bixe. Çalakiya Meşê ku di 26ê Tîrmehê roja yekşemê de li Amedê wê destpê bike û li Deriyê Sînor ê Xabûrê wê bi dawî bibe, bi daxuyaniya çapemeniyê wê bi dawî bibe. Di meşa ku Înîsiyatîfa Yekîtiyê ya PDKyê li dar dixe de posterên Mele Mistefa Barzanî û Mesûd Barzanî û alaya Kurdistanê wê bên hilgirtin.

**Ji Elmanya'yê ji bo pêşmergeyan 60 ton çek**

Di vê navberê de bi wergirî têkoşîna li dijî DAIŞê balafira bi 60 ton çek û bi mihîmmatên leşkerî dagirtî gihîşt Hewlêrê. Serokê Hêzên Leşkerî ên Elmanya'yê Volker Wieker diyar kir ku pêncşema çûyî ji bo pêşmergeyan balafira kargoyê ya leşkerî ya Antonov IN-124 ku bi 60 ton alîkariya leşkerî lê barkirî, piştî lêgerina rutîn a li Bexdayê gihîştiye Hewlêrê. Çek û mihîmmatên leşkerî ku ji hêla Elmanya'yê ve ji Hewlêrê re hatine şandin, gihîştine destê rayedarên Herêma Kurdistanê. Li gor malpera Serekê Serkantiya Giştî ya Elmanya'yê lîsteya çekên ji pêşmergeyan re hatine şandin ev e: 200 guleyên roketa Mîlan a antî-tankê, 900 guleyên "Panzerfaust 3" yên roketên antî-tankê, 5 hezar guleyên DM12A1, 5 hezar bombeyên destî, 1 milyon guleyên Leuchtpur G3.

Serkantiya Giştî ya Elmanyayê ragihand ku heta niha bi wergirî têkoşîna li dijî DAIŞ'ê, Elmanya'yê ji hêzên pêşmergeyê re 1900 ton mihîmmatên leşkerî şandine. Elmanya'yê, herî dawî di 16 Gulana 2015an de 180 ton kersteyên leşkerî şandibûn Hewlêrê.



## Kerkûkî
# Jiyana li jêr desthilata Iraqê heram e

Dr. Kemal Kerkûkî ku yek ji fermandarên eniyên Kerkûkê û beşdarî civîna bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bûbû, di derbarê serxwebûn, şer û geşedanên dawî de pirsên BasNûçeyê bersivand. Kerkûkî, da zanîn ku Serok Barzanî ji ber bi şêweyeke serkeftî parastina Kerkûkê kirine Fermandar û Pêşmergeyên wan pesindar nirxandiye û daye zanîn ku ew vê xîretkêşî û parasvaniya Pêşmerge wek nîşaneya mîsogeriya serxwebûna Kurdistanê dibîne. Kerkûkî ragihand ku Barzanî Kerkûkê yek ji bajarên mezin ên regez kurd destnîşan kirî ye û li gel vê yekê jî Pêşmerge wek parasvanên hemû pêkhateyên etnîkî û olî erkdar kirî ye. Kerkûkî diyar kir ku Barzanî destnîşan kirî ye ku di mijara serxwebûnê de kurd gihîştine qonaxa dawî û teqez kirî ye ku di vê mijarê de yê ku dikare biryarê bide gelê kurd e û bi vê yekê pêwîstiya referandûmê ragihandiye. Kerkûkî da zanîn ku Barzanî wek her mijarê, di meseleya serxwebûnê de jî diyalogê wek rêgeha herî erênî pêşkêş kirî ye gotiye: "Lê belê ger diyalog pêk neyê, bila tu kes hêvî neke ku wê kurd di cihê xwe de rûnin." Kerkûkî diyar kir ku Barzanî ji Pêşmerge xwestiye ku li dij hemû egeriyên xeternak ên şer û aştiyê xwe amade bikin.

Fermandarê Eniyên Rojavayê Kerkûkê Dr. Kemal Kerkûkî, di derbarê serxwebûnê de jî nirxandinan kir. Kerkûkî got: "Ger ku di mijara serxwebûna Kurdistanê de Neteweyên Yekgirtî (NY) û hêzên navneteweyî bêne qanîkirin, wê li dij serxwebûna Kurdistanê xeteriyên mezin peyda nebin. Serxwebûn wê bi xwe re xeteriyan jî pûç bike." Kerkûkî, dabînnekirina çekên giran ên ji bo şerê li hember DAIŞ'ê wek nimûne da û dom kir: "Dîroka Iraqê, ji bo kurdan tê wateya zilm, xwîn û komkujiyên mezin. Ji ber vê yekê ji bo kurdan jiyana li ser axa Iraqê heram e. Ger ku Kurdistan serbixwe be wê bi her awayî dikaribe çekên giran peyda bike û DAIŞ'ê ji axa Kurdistanê dûr bixe. Jixwe ne li hewa, ne li bejayiyê, ne jî li ser civakê hukumraniya dewleta Iraqê nema ye. Israra domandina Iraqê ji bo gelên li ser axa wê zilm e. Ji ber vê yekê ger ku kurd ji Iraqê veqetin wê gelê kurd di warê aramî, ewlehî û dewlemendiyê ve pir bi pêş ve biçe."

Dr. Kemal Kerkûkî, wek Serokê Berê yê Parlamena Kurdistanê di derbarê qeyrana siyasî ya şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê de jî nirxandinan kir. Kerkûkî da zanîn ku ew vê geşedanê wek qeyran nabîne û hêvîdar e ku di demeke kurt de wê ev pirsgirêk bê çareserkirin. Kerkûkî, diyar kir ku YNK, dixwaze di çarçoveya pergala parlamentî de payeyên serokê herêmê bêne kêmkirin û serok ji alî parlamenê ve bê hilbijartin, lê PDK jî li gel berdewamiya pergala parlamentiyê, dixwaze ku mijara serokê herêmê wek niha bimîne. Kerkûkî got: "Ji alî gel ve hilbijartina serokê herêmê nayê wê wateyê ku ev pergal ne parlamentî ye. Lewre li ser belgeya yasaya niha ya ku erka hilbijartina serokê herêmê dide gel, îmzeya YNK'ê jî heye."

**Yezdanpena: Armanc Kerkûka bê teror e**

Li aliyekî din, bêşdarvanê din ê civînê ku pirsên BasNûçeyê bersivand FermandarêPêşmergeyên Partiya Azadiya Rojhilatê Kurdistanê(PAK) Huseyn Yezdanpena diyar kir ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji fermandaran re gotiye ku çareseriya qeyrana ku li xeta Hewlêr û Bexdayê zor e, ji ber vê jî divê Kurdistan aboriya xwe ya serxwebûnê ava bike, ji bo aboriya serxwebûnê jî Kerkûk bajarekî pir girîng e, bi vê peywendê jî armanca sereke ya pêşmergeyan divê ev be ku Kerkûk careke din marûzî gefên terorê nebe.



# Kirmanckî de çîrokên modern





Nadire Güntaş Aldatmaz

Hîkaye zereyê edebîyatî de cayode muhîm der a. Meseleyê ke zereyê hîkaye der ê, mîyanê zemanêde kilmî de cereyan kenê. Yanî hîkaye zereyê heyatêde dergî de cayode kilmek gêna. La no ca winî muhîm o ke ge-gane îstîqametê heyatî negatîf yan kî pozîtîf vurneno. Coka meseleyê ke behsê ci beno layîqê nuşnayene bîyê, coka wendoxan kî gênê binê tesîrê xo. Çike rastkên ê. Çike zereyê heyatê min û to ra ancînê we yenê. Ma vajî, bextîyarî, yewbinî resayene, dejê merdene, dejê cêrabîyayîşî, dejê eşqî, poşmanîye û rastîyê zê nînan ke ma her roje yenîme têrî û bi ziwanode edebî qelema nuştoxan ra vejînê, ci ra hîkaye vanîme. Helbet bitesîrbîyayîşê hîkaye de rolê ziwanê nuştoxan zaf o. Nuştoxî çiqas ziwanî weş û dewletî bişuxulnê, çiqas hakimê ziwanî bê, hende bitesîr benê.

Hîkaye kilmek a la eksê na kilmekîye wendoxan rê berê dinyayade girse û rengine kena ra. Nê beran ra her yew wendoxan beno ca bi ca fetelneno û heyatanê bînan rê keno mêman.

Hîkaye kilm a la hetê kilmbîyayîşî ra wayîrê avantajî ya kî. Çike demo modern de merdim nêşikîno ke seba wendişî zaf zeman abirno. Coka însanê nê zemanî herinda nêzan çend sey rîpelanê romanî de hîkaye tercîh keno. No durum (yanî kilmîya hîkayeyan) seba nuştoxan kî avantaj peyda keno. Nuştox/e, çi ke wazeno/a vajo, mîyanê zemanêde kilmî de nuseno/a.

## Edebîyatê Dinya û yê Tirkan de Hîkaye

Tarîxê edebîyatê dinya de Boccacio (1349-1353), temsîlkaro verên yê hîkaye yeno qebulkerdene. Kitabê ey "Decameron" kî kitabê hîkaye yo tewr verên o.(1) Labelê hîkaye, esas seserra 19. de, çeşîtê edebîyatê bînan ra cêra bîye û zê çeşîtêde xoserkî dinyaya edebîyatî de ca girewt. Ê serran de, tayê romannuştoxê muhîmî kî bi hîkaye eleqedar bîyê. Mesela, êyê ke ma kî zaf rind nas kenîme ra Victor Hugo, Stendhal, Balzac, Flaubert, Tolstoy, Gogol û Dostoyevski eynî wext de hîkaye kî nuştê. Eleqeyê nuştoxanê zê nînan, cayê hîkaye kerdo berz û hîkaye mavênê eseranê edebî de, ca kerda.

Termê "Hîkayeya Moderne" kî verê cû hetê welatanê Rojawanî de, dima kî ma de, serê seserra 20 de vejîya meydan.

Edebîyatê tirkan de hîkayeya moderne kî binê tesîrê Rojawanî de peyda bîya û avêr şîya.

Înan de kî temsîlkarê hîkayeya moderne, Xalit Zîya (1866-1945) yo2. Umer Seyfedîn, Seîd Faîq, Xaldun Taner û Sebahedîn Alî kî temsîlkarê verênî yê hîkayeya tirkî yenê qebulkerdene.

Tirkî de tarîxê hîkayeya moderne teqabulê wextê komare (cumhurîyet) keno. Yanî hîkayeyê modernê tewr verêni serê seserra 20. de ameyê nuştene.

## Tarîxê Edebîyatê Kurdan de Hîkaye

Ma ke "edebîyatê kurdan" va, gerek qalê lehçeyanê kurdkî pêrune bikerîme (kirdaskî, sorankî, lurkî, hewramkî û kirmanckî). Tayê lehçeyanê kurdkî de eserê zaf muhîmî vejîyê. Hem kî wexto ke nê eserî vejîyayî, ê cayan de fariskî û erebkî zaf populer û qewetin bîyê, ancî kî nê eserê kurdkî heta ewru ameyê.

Kurdkî de eserê klasîkî yê tewr kanî, seserra 8. de, hewramkî û lurkî ameyê nuştene. Goreyê Antolojîyê Şîîranê Kurdkî ke Selîm Temoyî amade kerdo, destpêkê edebîyatê klasîkî yê kurdan seserra 8. ra dest pêkeno. (Behlulê Mahî (ss. 8), Babe Raxê Hemzanî (ss. 8.), Babe Xatemê Loristanî (ss. 8.), Babe Serhengê Dewdanî (ss. 8.), Babe



Gerçekê Hewramî (ss. 8.), Babe Tahirê Uryan (935-1010))3

No mevzû de çimeyode bîn kî neqlkerdişê Alexander Jabayî yo. Çîyo ke Fehîm Işik Jaba ra neql keno, heşt şaîrê ke lehçeyanê kurdkî ra (a ke tewr zêde qisey bena) kirdaskî de eserê klasîkî dayê kî nîyar ê: Elî Herîrî (1010-1078), Cizîrî (1566-1640), Feqiyê Teyran (1590-1660), Bateyî (1417-1491), Ehmedê Xanî (1650-1706), Îsmaîlê Bazîdî (1654-1709), Şeref Xanê Hekarî (1682-1748), Murad Xanê Bazîdî (1736-1778).4

Seke ma nê melumatî ra kî vînenîme, edebîyatê kurdan o klasîk heta seserra 8. sono. Dêmek ziwanê kurdan, hezar serrî ra jêder o ke dinyaya edebîyatî der o.

"Ewru, leyçeyanê kurdkî ra tena sorankî statuyêde xoyo resmî esto. Sorankî eynî wext de ziwanode zaf qewetin yê edebîyatî yo. Edebîyatê sorankî yo klasîk kî bi Nalî (1798 - 1878) dest pêkeno û şaîrê zê Hecî Qadirê Koyî (1815 - 1897), Pîremêrd (1867-1950) û Şêx Riza Talebanî (1831-1910) avêr sono."5

Mavênê nê eseranê klasîkan yê kurdan de, eserode kirmanckî çin o. Ma ke edebîyato modern de nîyada kî durum eynî yo. Mesela, Mela Mehmûdê Bayezîdî, serra 1840 de, (rêça Mem û Zîne de) hîkayeya verêne bi kirdaskî nuşta. Dima serra 1912 de, hîkayeya ke Fuat Temoyî (Çîrok/Şewêş, Rojî Kurd) nuşta kî kirdaskî ya. Nînan ra dima hîkayeya "Le Xewma" ke Cemîl Saîbî (1887-1951) nuşta, a kî sorankî ya.

### Vizêr û Ewroyê Hîkayeya Kirmanckî

Wexto ke ma konjokturê herême ard verê çiman vînenîme ke eserê klasîkî yê kurdkî hende senik nîyê. Hereketê nasyonalîzmê peynîya seserra 18. û serê seserra 19., împaratorîyê ê wextî kerdî vila û zaf miletan dewleta xo saz kerde. Wexto ke nê dewletî saz bî, tabî ke ê cayan de tena yew milet çin bî, yew kultur çin bî. Miletê bînî yê ke zereyê sînorê dewletan de mendî ê kî zafê cayan de bi zor asîmîle kerdî yan kî qeyret kerd ke asîmîle bikerê. Dewleta Tirkîya kî zereyê nê konjokturî de saz bîye. Îdeolojîyê xo yew milet û yew ziwanî ser o înşa kerd. Milet û kulturê bînî yê ke çend hezar serrî ra be nat tîya de ciwîyêne ge fizîkî ge-gane kî kulturî qetl kerdî. Dewletê ke kurdan rê hukm kenê, kurdan asîmîle kenê ra tewr asîmîlasyonkara xo dewleta Tirkîya bîye. Kirmanckîya ke tena zereyê sînorê Tirkîya de qisey bena û tarîxê xo de qet ziwanode nuştekî nêbîya, binê tesîrê na polîtîka de zaf manena û heta nê serranê peyênan kî fealîyetode nuştekî hama hama nêbeno.

Ma ke kirmanckî veracerê lehçeyanê bînan kerd vînenîme ke tarîxê edebîyatê kirmanckî yo nuştekî tewr newe yo. Coka kirmanckî de edebîyato fekkî zê yê lehçeyanê bînan belkî înan ra kî zêde avêr şîyo. Ewru kî no edebîyato fekkî beno bingeyê edebîyatê nuştekî. Edebîyato ke bingeyê xo qewetin o û na qewete ra beno weye, gerek bi xo kî qewetin bo û xo rê îstîqbalode zaf rind bivirajo. Nika ra sînyalê na rindîye asenê.

Her çiqas ke mewzûyê nê nuşteyî hîkaye ya kî gerek merdim, heta ke qalê nuşteyanê tewr verênan nêkero, ranêvêro. Metnê nuştekî yê tewr verênî yê Peter Îvanovîç Lerchî yê. Ey çarçewaya gureyê xo de çend sanik û meseleyî arêdayê û nuştê. Çîyo ke ma zanenîme, Lerchî ra avêr metnode nuştekî çin o. Na mana de metnê ey muhîm ê.

Wextê herbê Qirimî de (4.10.1853 - 30.04.1856) tayê eskerê Osmanî sey hesîran kewtê be destê rûsan. Çend aşmî uca de hesîr mendê. Nê hesîran ra çend teney kî kurd (kirdasî û kirmanc) bîyê. Peter Lerch nê hesîran de qisey keno, sanik û meseleyê ke înan ra goşdarî kerdê serra 1857 de Petersburg de weşaneno. Metnê kirmanckî yê tewr verênî bi no tore, bi tesaduf hetê merdimêde xerîbî ra yenê nusayene.

Metnê verênî yê ke kirmancan bi xo nuştê ra yew "Mewlûdê Kirdî" yê Ehmedê Xasî (1867-1951) yo, serra 1899 de Dîyarbekir de weşanîyeno. O bîn kî "Bîyîşa Pêxamberî" yê Osman Efendîyê Babijî (1852-1929) yo û serra 1933 de Şam de hetê Celadet Alî Bedirxanî ra weşanîyeno6.

Nê metnê ke qelema her hîrê nuştoxan ra vejîyê, çiqas ke bingeyê ziwanê nuştekî bivirazê û zaf muhîm bê kî zereyê edebîyatî de saye benê-nêbenê hîna mewzûyê munaqeşeyî yo.

"Ma nêşikîme ke vajîme edebîyatode klasîk yê kirmanckî esto. Ziwanê mewlidan çiqas ke estetîk o kî, nê, zereyê edebîyatî de saye nêbenê, çike eserode edebî de gerek fiction (kurgu) bibo."7

Nê çend metnê nuştekî ra tepîya heta peynîya serranê 1970yan bi kirmanckî xebatade nuştekî çin a. Çike o wext, qiseykerdena kurdkî qebhet a. Kamî ke qisey kerd, goreyê qanûnê qebhetan ra sereyê çekuye gerek pere bido.

### Hîkayeya Verêne

Kirmanckî, ancax nê serranê peyênan de eve hîkayeyade moderne kewta dinyaya edebîyatî. Hîkayeya ke ma destpêkê edebîyatê kirmanckî qebul kenîme "Engiştê Kejê" ya. Na hîkayeya Malmîsanijî serra 1980 de kovara Tîrej, hûmara 2. de weşanîyena. Malmîsanij, eve na hîkayeya xo çêverê kirmanckî rê edebîyatî keno ra.

Hîkaye, sey dîyalogî mavêne Keje û malimê dewe de vêrena ra. Hîrê pêçikê Keje şikitayî yê. Malimê dewe, ci ra sebeb pers keno. Keje kî cewab dana. Orteyê cewabanê Keje de ma têkîlîya kurdan û dewlete vînenîme. Yanî hîkayeya verêne, zulmo ke dewlete ere dewijan kena, ser o ya.

### 12 Êlule ra Tepîya

Weşanayîşê na hîkaye ra dima derbeya 12 êlule bena û çêvero ke kirmanckî rê tenê bîyo ra, tepîya yeno girewtene. Kesê ke bi kirmanckî eleqedar ê, zulmê 12 êlule ver sonê teverê welatî û tever ra kî bi gureyê xo seba kirmanckî şansê peyda kenê.

Hîkayeya diyine yê kirmanckî kî teverê welatî de serra 1995 de kovara Çira de weşanîyena. A verêne ra tam 15 serrî dima, eve a diyine çêverode bîn kirmanckî rê beno ra.

Hîkayeya diyine (Derdê Dewrêşî) yê J. Îhsan Esparî ya. Espar hîkayeya xo de mavênê atmosferê ê wextî de, halê şarê Dîyarbekirî û zulmê dewlete, problemê nêzanayena tirkî bi ziwanode trajîkomîk qisey keno. Hîkayeya diyine kî polîtîk a. Unca tey zulmê polîs û eskerî esto.

Serra 1995-96 de di hîkayeyê Serdar Roşanî (Bircanê Dîyarbekirî ra Mektubêke û Gozêre) verî bi kirdaskî nusîyenê û tayê kovaran de weşanîyenê la dima nuştox bi xo tercumeyê kirmanckî keno û unca kovara Çira de weşanîyenê.

### Avêrşîyayîşê Edebîyatê Kirmanckî de Cayê Kovaran

Kovarê edebî, avêrşîyayîşê edebîyatî de zê mektebî yê. Çitur ke kovarê edebî, avêrşîyayîşê hîkayeya tirkî de rolêde bingeyîn der ê, yê kurdkî de, cayê xo di qatî dahîna muhîm o.

Mesela, kovara Hawarî, hûmara xo ya verêne serra 1932 de, Şam de vezêna û temelê hîkayeya moderne nana ro. Kovara Gelawêjî hûmara xo ya verêne serra 1939 de vezena, a kî bena mektebê edebîyatê modernî yê sorankî.

### Vate

Kovara kirmanckî ya verêne Vate kî serra 1997 de, Swêd de dest bi weşanayîşî kena. Çitur ke kovara Hawarî seba kirdaskî, kovara Gelawejî seba sorankî bîya derguşa edebîyatê modernî, kovara Vateyî kî seba kirmanckî bena derguşe, bena mektebê edebîyatê modernî.

Vate, seba hîkayeya moderne kî cayode zaf muhîm der a. Heta ewru 39 humaranê Vateyî de 72 hîkayeyî weşanîyayê8.

### Şewçila

Seba avêrşîyayîşê hîkayeya kirmanckî kovarade zaf muhîma bîne kî Şewçila ya. Hûmara Şewçila a verêne wisarê serra 2011î de vejîye û heta nika des hûmarê xo kerdî temam. Des hûmaranê Şewçila de 82 hîkayeyî weşanîyayî. Eve Şewçila zaf kesî dest bi nuştiş kerd. Zafê nê nuştoxan hîkayeyî nuştî. Cayo ke ewru hîkaya kirmancî sayeyê Şewçila de resta ci, seba hîkayeya kirmanckî cawode zaf berz o.

82 hîkayeyê ke Şewçila de weşanîyayê ra 32 teneyî yê cinîyan ê9. Nê serranê pêyenan de nuştişê cinîyan ke bi Şewçila dest pêkerdo kî seba kirmanckî çîyode zaf newe yo. Cinîyê ma yê ke sey vatena Nazim Hîkmetî "Êyê ke sifre de cayê xo gayê ma ra tepîya yeno..." dest est bi qeleme. Êdî cinî kî derdê xo, kederê xo ziwanê xo de nusenê. Edebîyatê kirmanckî yo ke hona destê cinîke nêkewto ro ci, hona tey vengê cinîke berz nêbîyo, helbet kêmî yo. Na kêmîye hêdî-hêdî bena vîndî û cinî tîya de kî vengê xo kenê berz.

Tarîxê hîkayeya ma de weşenayîşê hîkayeya verêne ra 15 serrî tepîya a diyine û hîrêyine ra kî tepîya, serra 2002î de eve kitabê Roşan Lezgînî "Binê Dara Valêre de" çêverê edebîyatî, kirmanckî rê ancî beno ra. Dima heta serra 2010, serre de, ge-gane jew-di kitabê hîkaye vejînê, tayê serran de kî qet nêvejînê.

Ancax serranê 2012-13 de, yanî nê di serranê peyênan de eserê kirmanckî zaf jêdînê. Sebebê nê jedîyayîşî yo muhîm:

1-Atmosfero polîtîk vurîya. Ûnîversîteyan de qismê ziwan û kulturê kirmanckî û kirdaskî bî ra.

2-Kirmanckî û kirdaskî mekteban de zê dersa weçinitîye ameyî qebulkerdene. Seba derse, kitabî amade bî.

3-Weşenayîşê kovaran (Vate, Şewçila).

Mordem şikîno ke vajero, tarîxê hîkayeya kirmanckî de cawo ewruyên, cawo tewr berz o. Yanî performansê nê di serranê peyênan, se serra verêne ra jêder o.

















### Seroka Rêveberiya Herêmî Nevin Soyukaya:

# Amed êdî bajarekî

**Li Amedê kelecana daketina lîsta Mîrateyên Çandî ya Dinyayê ya UNESCO'yê ya Bircên Amedê û Bexçeyên Hevselê didome. Bircên Amedê û Bexçeyên Hevselê bi biryara civîna salane ya heyama 39. a Lijneya Mîrateyên Cîhanê ya Rêkeftina Perwerdehî, Çand û Zanistê ya Neteweyên Yekgirtî (UNESCO) kete lîsta wê ya mîrateyên dinyayê. Gelo ketina lîsta UNESCO'yê tê çi wateyê? Ev biryar wê bandoreke çawa li ser Amedê bike? Seroka Rêveberiya Qadî ya Peyzaja Çandî ya Kela Amedê û Bexçeyên Hevselê Nevin Soyukaya di derbarê destkeftên vê biryarê û pêvajoya piştî vê biryarê hemû pirsên me bersivand..**





**Özcan Şahin**

***Bircên Amedê di 2000'an de ketibû lîsta demî û 15 sal şûnve ket lîsta eslî. Sedemên vê çi bûn?***

Rast e di 2000'an de Bircên Amedê kete lîsta demî ya UNESCO'yê. Her çiqas Bircên Amedê di lîsta Wezareta Çandê ya mîrateyên ku dikarin bikevin lîsta UNESCO'yê de be jî, ji 2000'an şûn ve tu xebatek nehatibû kirin.

Di dawiya sala 2011'an de ji ber ku Bircên Amedê wek milkiyet bi Wezareta Çandê ve girêdayî bû û ji bo her karî destûra wê pêwîst bû, Şaredarê Amedê yê wê demê Osman Baydemir serdana Serokkomarê wê demê Abdullah Gül kir, jê re got ku divê bircên Amedê bêne parastin û ji bo vê yekê daxwaza alîkariyê lê kir. Piştî vê serdanê, Wezareta Çandê ji bo sînorê qada rêveberiya xwe destnîşan bike, li Amedê bi dezgehên herêmî re dest bi xebatekê kir. Piştî ku sînorê qadê hate destnîşankirin di Çile'ya 2012'an de Serokatiya Rêveberiya Qadî ya Şaredariya Amedê hate damezirandin û di pey re me dest bi vê xebatê kir. Ji aliyekî ve ji bo Bircên Amedê û Bexçeyên Hevselê dosyeyên wan ên UNESCO'yê dihatin amadekirin, ji aliyê din ve jî plansaziya rêveberiya qadê hate amadekirin. Me ev her dû xebatan jî bi serkeftî temam kir û di Sebata 2014'an de me dosyeya xwe pêşkêşî UNESCO'yê kir û em bûn namzet. Di Tebaxa 2014'an de jî me plana xwe ya rêveberiya qadê pêşkêş kir. Dûre bi Beşa Teknîkî(ICOMOS) ya UNESCO'yê re dest bi muzakereyan kir û me hemû kêmasiyên xwe temam kir. Di dawiyê de jî ICOMOS'ê pisporekî xwe şande û li qadê dest bi lêkolînan kir. Bi pêşniyaza wî pisporî me Kaniya Enzelê jî daxilî lîsta mîrateyên dinyayê kir. Di dawiya hemû van xebatan de qada mîrateyî ya ku Bircên Amedê, Kela Navîn, Bexçeyên Hevselê, beşeke ji Geliyê Dîcleyê û beşek ji Yenişehirê jî wek qada parastinê hatiye destnîşankirin. Pêwîst e ev qadên ku min navên wan anî ziman jî li gor standardên navneteweyî bêne parastin. Plansaziya me ya rêveberiya qadî destnîşan dike ku em ê hem qada mîrate hem jî qada tampon çawa biparêzin. Ev Plansaziya me jî hate çavdêrîkirin û pesendkirin.

***Wê dora vê qada berfireh bandoreke çawa werbigire?***

Ji bo parastina vê qadê her wiha qadeke tampon jî hatiye destnîşankirin. Ji vê qada tampon re qada parastinê jî tê gotin. Bi vê mebestê Sûriçî, Geliyê Dîcleyê û beşek ji Yenişehirê jî wek qada parastinê hatiye destnîşankirin.

***Herêma Tampon tê çi wateyê?***

Herêma tampon nayê wê wateya ku mixek lê nayê kirin, tê wateya avakirina hevsengiya parastin û bikaranînê ango peydakirina bikaranîneke domandî û parastinê ye, bo vê jî beyî ku taybetiya herêmê xirab bikî divê vesaziyê bikî. Digel ku ji bikaranîna girseyan re bi awayekî sînorkirî vekirî bimîne û hilberandina baxçeya Hewselê neyê astengkirin û bê teşwîqkinin divê di nav Sûrê de bo ji nû ve dayîna nirx û taybetiyên wê, xebat bên kirin. Heke hûn bala xwe bidinê, gava hûn pişta xwe didin Sûran hûn dikevin bajarekî cipcuda. Herêmên tampon jî ji bo jiholêrakirina vê hîsê tên avakirin. Divê meriv hîs bike ku diçe bajarekî dîrokî. Pêdiviya xebatekê wisa heye ku divê ji bilindahiya Sûran derbas nebe, dîmena wan negire, ji berê avahiyan bigire heta ku tu hîs bikî Yenîşehir jî perçeyek ji bajarekî xwedî nasnameya dîrokî ye. Ev jî ji bo kêmkirina zextên bazirganî û gelheyî yên gengaz ên qada mîrateyê ye.

***Ketina UNESCO'yê tê çi wateyê?***

Ketina UNESCO'yê tê wateya xwedîbûna sîwana parastinê. Ev bajar prestîjeke cidî bi dest xist û hat tescîlkirin ku bajarekî cîhanê ye. Tevî mîrateya xwe ya çandî û xwezaya xwe ev bajar, mîrateyeke cîhanê ye. Ev rêzdarî jî gelek derî ji te re vedike, di serî de nasandina wî dê zêdetir bibe, geş û guzara wî dê geş bibe. Heke rêvebirên herêmî û saziyên têkildar vê yekê baş bi kar bînin û bergiriyên xwe bikin geş û guzara vî bajarî dahateke baş biafirîne. Lêbelê ji bo vi tiştî hûnandineke baş divêt. Ev geş û guzar, bi awayekî neyekser bandor li Amediyan jî bike. Di vir de babeta herî girîng ev e ku herêm vê yekê bi awayekî durist bi kar bîne û hevsengiya bikaranîn û parastinê baş pêk bîne.

***Malbatên di nav Sûran de dijîn, wê çi bibe ji wan?***

Derûdorên Sûrên Amedê heta sala 2002'an bi xanî û kargehan dorpêçkirî bû. Sûr nedihatin sehkirin û di nav rewşeke pir xerab de bûn. Di sala 2002'an de bi hewldana serokê şaredariyê yê wê demê Feridun Çelikî, derûdorên Sûran hat vekirin û heke wê demê vesaziyeke wisa nehatibûya kirin dibe ku îro em nediketin UNESCO'yê. A rastî her tişt berdewamiya hevdû ye, heke ew vesazî nehatiba kirin me yê çawa behsa Sûran bikira, lewre nedihatin dîtin. Lê bi wê xebatê derûdorên Sûran beyî ku kes bê mexdûrkirin hatin valakirin. Ev yek pir girîng e, kirina vê yekê êdî ji bo şaredariya me ne pir zor e. Aniha di nav bircan de malbatin hene ku jixwe qadeke netendirust e bo jiyandinê. Ez bawer dikim ku ji hêla şaredariyê ve bo wan mirovan beyî ku wan mexdûr bikin alternatîfek wê bê dîtin. Bo vê, em ê çareseriyên mirovperwer bibînin, fikra min ev e ku di xebatên bi vî rengî de beyî ku mirov ji derveyî bajêr bên avêtin û ji jiyana aborî bên dûrxistin çareserî bên peydakirin.



# cîhanî ye



***Baxçeyên Hewselê aidî şexsan e û piraniya wan dibêjin ku em ji vê derê dahat nastînin û dibêjin em dixwazin cihên wekî kafeyan vekin. Biryara UNESCO'yê çawa bandor lê bike?***

A girîng ev e ku em Hewselê digel van mirovan biparêzin. Di Baxçeyên Hewselê de xakên xezîne û weqfan jî hene lê piraniya wan ên şexsan e jixwe wisa nebûya wisa nedihat parastin û bi vî awaî dê nedihata roja îroyîn. Rêbazên çandinî û zincîra bazirganî ên nû, bandoreke neyînî kiriye li Baxçeyên Hewselê jî. Berê Amed hê zêdetir bi brhemên Hewselê xweyî dibû lê aniha têrê nake û ji derveyî bajêr berhemên erzantir tên. Ev yek jî bandor li hilberandina Hewselê dike û xwediyên baxçeyan jî difikirin ku kafeyan vekin û pê hê rehettir debarên xwe bikin. Peywira me ev e ku vê nakokiyê ji holê rakin û çareserî bibînin da ku bi bexçevaniya kevneşopî ev mirov bikaribin debarên xwe bikin û ew der bibe cihekî baldar. Heke ev yek pêk were cotkarên wê derê bên piştgirîkirin û karên çandiniyê jî dom bikin. Jixwe Hewsel, bi erka çandiniyê ket UNESCOyê. Em ê jî hin bergiriyan bikin. Piştgiriyê bidin cotkaran û bergiriyên wekî ava paqij, bikaranîna zibla organîk û vekirina qadên firotinê bikin. Heke ev bên kirin ez bawer im ku xwediyên zeviyan ji me bêtir vê derê biparêzin.

***Bi peywenda mîrateya çandî rewşa cih û warên dîrokî ên Kurdistanê çi ye?***

UNESCO dewletan ber bi çav digire û dosyayên li herêman hatine amadekirin divê ji hêla Wezareta Çandê ve bên pejirandin. Em dosyayên ku li herêman amande dikin li ser Wezareta Çandê dişînin Wezareta Derveyî û UNESCO'yê, em nikarin rasterast bişînin. Ji ber vê yekê divê mîrateyên herêmî pêşî bikeve lîsteya demdemî a Wezareta Çandê. Van demên dawî li Kurdistanê gelek mîrate ketin lîsteya demdemî. Mêrdîn, Xerabreşk, qada Mor Yaqûba li Nisêbînê, Dêra Axtamara li Wanê û hin cihên li Rihayê jî hene. Bi texmîna min dosyaya Xerabreşkê jî dê were pêşkêşkirin û di 2017an de wê biryar bê dayîn. Sala bê, Kavilên Anî yên Qersê dê were nirxandin. Ji ber ku dosyaya wê hatiye dayîn û di statuya berendama fermî de ye. li herêmê Mêrdîna bajarê dîrokî di lîsteya demdemî de ye û heke xebat ji bo wî bê kirin dê ew ê jî bikeve. Herêm çiqas îsrar bike û amade bibe pêvajo dê ewqas bilez û dirust pêş bikeve. A rastî Sûrên Amedê û Baxçeyên Hewselê tam di wextê xwe de ketin nav lîsteya mîratê ya cîhanê. Heke vêga neketibana di pêş de hê zortir bibûya.

***Tiştên ku herêm dibînin Wezareta Çandê jî dibînin. Gelo Wezaret rasterast nikare ji bo vê bixebite?***

Helbet dibînin lê ji ber ku cih di nav berpirsiyariya herêmê de ye hemû pirsyarî ketiye milê herêmê. Çaxê ku ez di sala 2000'î de Gerînendeyê Muzeyê bûm dîsa dosyaya tevîkirina Surên Amedê li lîsteya demdemî min amade kiribû û em ketibûn lîsteyê. Lê ji sala 2000'î heta sala 2011'an tu tişt nehat kirin. Heta ku serokê şaredariyê yê wê demê ev yek xist rojevê û îsrar kir. A rastî divê ji bo vî tiştî em li hêviyê nemînin lê me bi gelek sazî re hevdîtin çêkir û me her alî dan zorê. Bo nimûne di sala 2013'an de me civînên ICOMOS û ICOFORD'ê li Tirkiyeyê çara pêşî li Amedê li dar xistin. Me bi sedan pisporên 70 welatan li Amedê civandin û bi wan re li ser Amedê nîqaş kirin. Bi pêşniyara wan me Baxçeyên Hewselê tevî qada mîrateyê kir. Divê meriv zorê lê bide da ku piştgiriyên herkesî bistîne û hin têkilî û hevpeyvînan geştir bike. Hele ku tu li Kurdistanê bî tu mecbûrî zêdetir vî tiştî bikî. Di nav lîsteya demdemî de 54 qad hene, kî dosyaya xwe zûtir amade bike ew dikeve pêş. Îro Amed û Efes ketinê. Efes wek hebûna çandî ket lîsteyê, ji ber wê em digel Hewselê wek peyzajê çûn lewre dii heman salê de tu nikarî du hebûna çandî pêşkêş bikî.

***Qasekî din te got heke vê salê neketiba lîsteyê, ketina lîsteyê ên Sûrên Amedê û Baxçeyên Hewselê dê zortir bibûya. Te qesta çi kir?***

Welat, nikarin bi qasî ku dixwazin dosyayan pêşkêş bikin. Heta îro şert û merc bi vî awayî bûn lê ji sala 2017an ve êdî her welat dê bikaribin dosyayek pêşkêş bikin. Sînordanînên UNESCOyê hene. Heke me wek peyzajê pêşkêş nekiriba em ê jî bimana sala bêyî. Ji ber vê dema pêşkeşiyê de diyarkirina çawanî û rengdêrîkirinê jî girîn dibe. Ji niha û pê de di nav kîjan kategoriyê de bibe bila bibe her welat dê biikaribe tenê dosyayek pêşkêş bike. Sala bêyî tenê Anî wê were pêşkêşkirin. Piştî wê qadeke din wê were pêşkêşkirin. Di vê rewşê de amadekirina dosyayê roleke girîng dilîze. Ji bo vê jî divê em bi hev re bişopînin û teşwîq bikin. Bo nimûne Xerabreşk û Mêrdîn gelekî girîng in û divê teqez bikevinê. Divê Mêrdîn gavek berî gavekê van xebatan bide destpêkirin. Cihên me yên ku bikaribin bibin mîrateya xwezayî gelek in. Bo nimûne Geliyê Zapê, çima nebe û Eskîf pir girîng e lê hê neketiye lîsteya demdemî jî. Lewre dewlet dixwaze li wê derê bendavê ava bike û ji ber vê yekê nikare bikeve lîsteya demdemî. Cihên di vê rewşê de gelek in.

***Bi şer re gellek mîrateyên dîrokî yên Rojhilata Navîn hatin rûxandin. Li ser vê mijarê tu xebat nayêne kirin. Tu vê rewşê çawa dinirxînî?***

UNESCO, hewl dide ku bala raya giştî bikêşîne ser vê mijarê û hişyariyan dike, lê belê ev têr nakin. Divê xebat bêne kirin. Ji bo mîrateyên li qadên şer, divê dewlet û UNESCO bi rêveberên herêmî re bikevin têkiliyê. Wek nimûne li Rojava gellek mîrateyên dîrokî hatin têkbirin. Ji van mîrateyan çi hate têkbirin, çi ma tu kes nizane. Bêguman grîngiya sereke jiyana mirovan e, lê belê divê herkes erka xwe bi cih bîne. Ji bo parastina jiyana mirovan gellek kar û xebat têne kirin. Lê belê ji aliyê din ve li herêman gellek pisporên ku heta niha di derbarê mîreteyên çandî û dîrokî de li qadên şer xebatan dikin hene. Divê bi van pisporan re koordînasyonek bê sazkirin û çi çûye, çi maye û ji bo yên mayî mirov dikare çi bike? Divê li ser van babetan xebat bêne kirin û mîrateyên mayî bêne tomarkirin. Agahîyên rasteqîn têne ber7 destên me ku DAIŞ bazirganiya van mîrateyên dîrokî jî dike û mixabin mûşteriyên wê jî rojavayî ne. Teqez wê şer bi dawî bibe û ev erdnîgarî wê ji van hovan bê paqijkirin. Lê belê divê tafilê ev xebat bêne destpêkirin da ku ev mîrateyên nîşaneyên hebûna mirovahiyê bi tevahî têk neçin. Bi têkbirina van mîrateyan bîra mirovahiyê tê valakirin. Li herêmê paqijiyeke etnîkî heye û beriya her tiştî DAIŞ'ê êrîşî mîrateyên dîrokî kir. Divê li ser vê rewşê xebateke baş bê kirin û eger ev xebat bê destpêkirin yekem kesa dildara xebatê ez im. UNESCO bixwe jî di derbarê rewşê de ne agahdar e û agahiyan ji nûçeyan dişopîne û hişyariyên xwe li ser van agahiyan dike. Lê divê UNESCO ne ji nûçeyan ji jêderên herêmî yên mîsoger agahiyan bistîne, lê mixabin nake. Di vê mijarê de em UNESCO'yê pir rexne dikin.

***Di dawiyê de wek keseka ku di her qonaxa vê projeyê de cih girtiye tu dixwazî çi bêjî?***

Lîsta mîrateyên dinyayê bi mertaleke navneteweyî tême parastin. Mîrate tenê bi şer têk naçin. Dema me vê dosyeyê amade kir, em ji aliyekî ve li dij HES'an ji aliyê din ve jî li dij projeyên Geliyê Dîcleyê têdikoşiyan. Ji bo ew projeyên kujer ên ku ji Enqereyê tême şandin pêk neyên divê biketa lîsta mîrateyan. Ev pir grîng bû. Ev tê wê wateyê ku em ê bi dinyayê re van mîrateyan biparêzin. Lê belê divê ne tenê ji derve re, ji hundur ve jî bê bêne parastin, ango divê em wan ji xwe jî biparêzin. UNESCO ne armanc lê alav e. Divê em belgeyên ku niştecihiya me ya vê axê şanî me dide biparêzin û radestî nifşên siberojê bikin. Bi vî awayî wê nifşên siberojê jî zanibin ku ew domdarên vê çand û mirateyê ne. Divê hemû şêniyên bajar xwedî lê derkevin. Ev xebat, yekem nimûne ye ku bi hevdestiya Dezgehên Medenî, dildarên bajar û hemwelatiyan hatiye amadekirin û ketiye lîstê. Wezareta Çandê jî vê yekê got. Divê em serkeftinên xwe bidomînin.

## Ezdî, hebûn û tunebûn

# Ji welat û ji hemû bihûştan sirgûnbûn

**Lîza Deysem**

Êzdiyên ku li derdora Şengalê rastî êrîşên DAIŞ'ê hatibûn neçar mabûn ku warên xwe biterikînin û bi lez xwe bigîhînin cihên ewle. Herwiha ji êzdiyên ku karibûn ji destê DAIŞ'ê xilasbin bêhtirî wan li Başûr li qampên cûda hatibûn bicîhkirin û qismekî mezin jî derbasî Bakûr bibûn. Êzdiyên ku li bajarên Bakûr li qampan hatin bicîhkirin demeke dirêj e ku di nava mercên ne baş de dijîn, zivistanê serma, havînê jî germ jiyana wan dixe rewşeke zor giran û herwiha tirsa DAIŞ'ê niha jî gihîştiye qampan. Herwiha ew xal jî bûn sedem ku êzdî bi lez berê xwe bidin Ewropa da ku hem ji van mercên giran û hem jî ji tirsa DAIŞ'ê xilasbin. Lê heviya wan li ber deriyê Kapıkule'yê bi dawî bû.

Nêzîkî 3.500 êzdiyên ku li kampên Amed, Batman û Mêrdînê dijîn, di 27'ê Hezîranê de li qada newrozê ya Amedê bi awayekî rêxistinî siwarî otobosan bûn û bi rê ketin da ku derbasî Ewropayê bibin. Di 28'ê Hezîranê de qefleya ewil li Sêwregê hatin sekinandin. Qefleyên din jî li pey hev ber bi Bûlgarîstanê ve diçûn û beşek ji wan li Meletî, Edene, Enqere û Bolûyê hatin vegerandin. 2 hezarên ji wan xwe gihandin Stenbolê û 350 êzdî li 5 km dûrî deriyê sînor ê Kapikule'yê ji hêla Walîtiya Edirneyê ve hatin sekinandin. Êzdiyan li wir ji ber zilm û zora cendermeyan dest bi çalakiya rûniştinê kir. Cendermeyan ew bi darê zorê şandin Stenbolê. Dawiyê, bi hewldana berpirsiyarên dewlet û HDP'yê vegeriyan qampan.

**Jiyana li nava konan heta kîngê**

Par, di meha tebaxê de ji 20.000'î zêdetir êzdî ji Şengalê ji ber êrîşên DAIŞ'êreviyabûn û koçî dewerên cuda yên Kurdistanê kiribûn. 350 hezar penaberên êzdî li kampa Zaxo û Dihoka Kurdistana Başûr dimînin. Li Kurdistana Bakur jî li kampên Amed (5.652), Batman (2.525), Mêrdîn (646), Şernex (5.907), Sêrt (1.195), Riha-Wêranşar (1.242) û Midyadê (2.840) bi tevahî 20.007 êzdî di nav şert û mercên pir giran de dijîn. Ji ber hin sedeman 3.500 êzidî ji Batman, Şernex, Amed û Mêrdînê sibeha 27'ê Hezîranê ji qada newrozê a Amedê ketin rê û 2000'ên ji wan gihîştin Stenbolê. Qefleyeke ku ji 250 kesan pêk dihat jî 5 km ji dûrî deriyê sînor ê Kapikule'yê ji hêla Walîtiya Edîrneyê ve hatin sekinandin û cendirmeyan bi zorê ew şandin Stenbolê. Êzdiyên ku li otogara Esenlerê disekinîn di 29'ê Hezîranê de ketin rê û rêvebirên fermî ew şandin kampa AFAD'ê ya li Nisêbînê. Bi hewldana Koordînasyona Şengalê ya Amedê 791 êzdiyên ku li kampa Amedê diman vegeriyan kampa xwe ya li Amedê. Lê êzdiyên ku ji ber zilma DAIŞ'ê reviyane û êdî baweriyên xwe bi cîranên xwe yên ereb jî nayînin çawa wêriyan beyî nasîna rê û bê pere û bi organîzasyoneke girseyî ketin rê? Dayîkeke bi navê Zerîf Xelef ku li kampa Amedê dijî derbarê sefera xwe de got ku me got belkî bo çûyîna Ewropa'yê derfetek çêbibe lê hikûmetê nehişt, em hê negihiştibûn Stenbolê hikûmetê dora me girt û nehiştin em biçin. Zerîf Xelef li ser sedemên daxwaza çûyîna Ewropa'yê wisa axivî: "Em newêrin biçin nav DAIŞ'ê, em newêrin vegerin Şengalê, li vê derê jî havînê germ e, zivistanê jî sar e û zehmetî gelek in, li vir me xweyî dikin, lê heta kîngê." Her wiha Zerîf Xelet got ku ew baş dizanin ku heke ew Şengalê vala bikin dê ji destê wan derkeve lê ew newêrin biçin Şengalê. Heke DAIŞ ji Şengalê bê derxistin jî hemû gundên li derûdora wan ku ereb lê dijîn giş dijminên wan in û ew jî piştgiriya DAIŞ'ê dikin.



**"Bêyî Ewropa xetere li her derê ye"**

Berpirsiyarekî êzdî Îlyas Simoqî jî diyar kir ku ji bilî Ewropa'yê li hemû deverên cîhanê jiyan bo êzdiyan wê zehmet bibe û wisa domand: "Ji xeynî PKK'ê kes alîkariya me nake bes ew jî karê wan zehmet e, em ditirsin heke Tirkiye jî xerab bibe wê rewşa me bêhtir xerab bibe." Îlyas Simoqî da zanîn ku ji Amedê 5 otobos gihîştine sînorê Bûlgaristanê bes gava ew gihîştine Stenbolê ji wan li Amedê nêzîkî 43 otobosan êzdî li wir civiyane. Simoqî ragihand ku hin êzdiyên ku li Ewropa'yê, li Bûlgarîstanê dijîn ji wan re gotine heke hûn biçine sînorê Bulgarîstanê emê ji we re bibin alîkar û heke hûn zehf bibin ewê we derbasî Bûlgaristanê bikin ji ber vê yekê ketine rê. Îlyas Simoqî got ku êdî baweriya wan bi kesî nayeê û li Rojhilata Navîn cihên ku misilman tê de bibin ew ditirsin ku herin lê bisekinin.

Îlyas Simoqî qala sefera êzdiyan ya ber bi Bûlgarîstanê ve jî kir û got ku, çawa ji otobosê peya bûne cendermeyan qirika wan girtiye û li wan dane.

**Dora Şengalê tev de erebên DAIŞ'î ne**

Herwiha Îlyas Simoqî di derbarê vegera li Şengalê de jî diyarkir ku dora Şengalê giş erebên DAIŞ'î ne û kes wan naparêze û wiha domkir, "Xwezî Şengal li kêleka Amedê bûya ne li wir bûya. Heke em vegerin Şengalê piştî 10-20 salên din dê cardin ev bûyer biqewimin, ev 74 car e ku li Şengalê wisa dikin. Pirsgirêk ev e, kes mala xwe xaka xwe ji bîr nake bes li wir tiştek nema, li cihên me elektrîk tune, av tune, kes me xweyî nake, her kurd jî ne wek hev in. Sînorên Şengalê jî parastî nîne. Erd û xaniyên me tapokirî nîn in. Rewşa me li Şengalê jî ne baş bû."

**Tirsa dewletê...**

Berpirsiyarekî kampa Amedê jî têkildarî mijarê diyar kir ku ji dîrokê heya niha êzidî gelek caran rastî êrîşan mane û baweriya wan bi kesî nemaye û li qampan bi rêya tora civakî û televîzyonê rojevê dişopînin û dibînin ku navê DAIŞ'ê êdî li Tirkiye'yê jî derbas dibe û dibînin ku hikûmeta Tirkiye'yê alîkarî dide DAIŞ'iyan û ev yek jî wan ditirsîne. Her wiha berpirsiyarê nexwest navê xwe eşkere bike got ku êzdî ji şerî ditirsin û dîtine ku li Amedê jî teqîn çêbûye û ev yek ramandina çûyîna Ewropa'yê hê zelaltir û xurttir kiriye, bi kurtasî êzdî êdî di Rojhilata Navîn de xwe di nav ewlehiyê de nabînin, Rojhilata Navîn li ber çavê wan bûye gola xwînê. Her wiha berpirsiyar da zanîn ku aniha hewldanek heye bo ku li nêzikî Bismilê gundekî ku 10 hezar kes lê bisekine bê avakirin û ev proje didome.

Di vê navberê de Parlamenterê êzdî yê Batmanê yê HDP'yî Ali Atalan jî di derbarê rewşa êzdiyan û daxwaza çûyîna wan a Bûlgarîstanê de pêşniyarpirsek da Serokwezîr Ahmet Davutoğlu. Ali Atalan bal kişand ku beşeke biçûk a êzdiyan li qampên AFAD'ê dimînin û dewletê hîn jî statuya penaberiya demkî nedaye wan, ji ber vê jî êzdî ji hin mafên penaberiyê bêpar in. Her wiha Atalan di pêşnizpirsa xwe de daxwaza daneyên di derheqê gelheyê êzdî de jî kir û daxwaza eşkerekirina xebatê ku tên kirin kir. Di pêşniyazpirsa Atalan de pirsên ku hatibûn rêzkirin bi vî awayî bûn: Derfeta wan a aborî tune bû gelo êzidiyan bi çi awayî wesaît organîze kirin û walîtiya Amedê çima destûra birêketinê daye û çima walîtiyên Amed, Batman, Şirnex û Sêrtê negotin çûyîna wan ne pêkan e? Gelo planeke hikûmetê ji bo valakirina qampan heye? Gelo tedbîreke li dijî şebekeyên bazirganiya mirovan heye an na? Di nava van pirsan de şika herî xetere ev e ku tiliya bazirganiyên mirovî di belavkirina gotegotan de hebin û bi vî awayî hêviyên êzdiyan hatibin firotin. Lewre ji nişke ve ev gotegot di nav êzdiyan de belav bûbû û birêketin bilezûbez qewimî. Angaşt ev e ku tiliya bazirganên mirovî tê de hebe ku Alî Atalanî jî ev angaşt bilêv kir. Her wiha Komîsyona Penaberan a ÎHD'yê jî daxuyanî da û got ku Tirkiye'yê tenê 250 hezar êzdî xweyî dike û ew ji mafên ku penaberên Sûrî sûde werdigirin bêpar in, Tirkiye statuya penaberiyê nade êzdiyan. Her wiha ÎHD bale kişand ku heke ji hêla dewletê ve tedbîrên mayînde yên qanûnî neyên girtin êzdî bi xetereya bazirganên mirovî re rûbirû dimînin.

# Azadî, HDP û nîqaşên LGBTÎ




**Kalê Badî**

Hereketa Azadî ku di Hezîrana 2012'an de wek însiyatîf xwe olan kir û piştî 2 salan, di Îlona 2014'an de guherî û wek hereket xwest ku bibe berdevkê hestiyariyên olî û neteweyî yên kurd, di 2015'an de bi mebesta piştgirîdayîna HDP'ê beşdarî Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî bû. Lê belê piştî hilbijartinan, di çend mijarên wek nêzîkahiya HDP'ê ya LGBTÎ'yiyan û hin pirsgirêkên navxweyî hate rojevê. Me bi ramankar û endamê Hereketa Azadî Nivîskar Yavûz Delal re van pirsgirêkan şopand. Delal got: "Piştgirîdayîna hin payedarên HDP'ê ya 'Meşa xîretê !' ya LGBTÎ'yiyan nexwendin û kornêrîntiya HDP'ê ye"

**'Konsept hevgirtina Kurdistanî ye'**

Nîqaşên ku di nav Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî de rû dan û ji alî hin kesan ve wek nakokî têne danasîn, li ser nêzîkahiya HDP'ê ya LGBTÎ'yan bû. Ev nîqaş, hem di nav Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî ya ku ji Partiya Demokrasî ya Gel(HDP), Partiya Herêmên Demokratîk(DBP), Kongreya Civaka Demokratîk(KCD), Komeleya Kurd a Şoreşgerên Demokrat(DDKD), Partiya Azadî û Sosyalîzmê(ÖSP) û Hereketa Azadî pêk tê, hem jî di nav Hereketa Azadî bixwe de bû sedemê pirsgirêkan. Endamê Hereketa Azadî û Nivîskarê Îlahiyatvan Yavûz Delal ji bo sedemên beşdariya Hereketa Azadî ya nav Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî da zanîn ku ji ber ku di metna konsepta Hereketa Azadî de xala 'Hereketa Azadî hevgirtina civakî û siyasî wek rêgeza polîtîk dizane' li ser wan ferz kirî ye, ew beşdarî hevgirtina 7'ê Hezîranê bûne û di vê beşdariyê de wan hesabên bazarên berjewendparêz ên polîtîk nekirî ye. Delal got: "Ji ber vê xalê me bi hêmanên din ên Kurdistanî re ji bo hilbijartinên 7'ê Hezîranê biryara piştgirîdayîna HDP'ê stend.

**'Konsept qala LGBTÎ'yan nake'**

Yavûz Delal diyar kir ku metna konsepta hevgirtinê ya ku azadiya wijdanî û olî destnîşan dikir, her wiha amaje bi wê yekê dikir ku hevgirtin, dabînkirin û bidestistina azadî û hemû mafên neteweyî yên gelê kurd ên wek; statuya Kurdistan, perwerdehiya ziman, fermîbûna zimanê kurdî, di destûrê de parastina nasnameya neteweyî ya gelê kurd wek polîtîkaya xwe ya sereke radigihand. Delal wiha dom kir: "Metna konseptê erênî yan jî neyênî qet qala LGBTÎ'yan nedikir. Jixwe konsep ji ber berpirsyariyên civakî û pêdiviyên polîtîk li ser hîmê kurd û Kurdistanîtiyê hatibû avakirin û ji ber wê yekê navê wê danîbûn Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî" Delal diyar kir ku eleqeya beyannameya hilbijartinê ya HDP'ê û metna konsepta hevgirtina Kurdistanî bi hev re tune ye, lewre; beyannameya HDP'ê piştî qebûlkirina metna konseptê hatiye aşkerekirin. Delal da zanîn ku hevgirtina hilbijartinê ya Kurdistanî ne jî ber beyannameya HDP'ê, ji ber mercên li Kurdistan piştgirî daye HDP'ê. Delal aşkere kir ku Hevgirtina Hilbijartinê ya Kurdistanî, xebatên xwe li ser naveroka beyannameya HDP'ê nemeşandiye û di beyannameya HDP'ê de hebûna mijara LGBTÎ'yan an jî mijara Kurdistanî ji bo wan nebûye krîterên beşdariyê. Delal got: "Beşdarvanên Hevgirtina Kurdistanî ji ber ku bawerî bi wê yekê hanîn ku piştgirînedana HDP'ê wê ziyanên mezintir bide Kurdistanê wiha helwestiyan û di rastiyê de piştgirî nedan HDP'ê, dan aramî, aşitî, siyaset û yekîtiya Kurdistanê"

**'Piştgiriya LGBTÎ'yê cihê tirsnakiyê ye'**

Li ser mijara piştgirîdayîna LGBTÎ'yiyan ya 'meşa xîretê' ya hin HDP'yiyan ku di nav Hevgirtina Hilbijartinê û taybet di nav Hereketa Azadî de bû cihê gengeşiyan jî Yavûz Delal ragihand ku 'meşa xîretê' ne di çarçoveya berpirsyariyên Hereketa Azadî de ye, lê belê hin kes dixwazin ku vê meseleyê ji bo wan bikin sedemê nakokiyan û her çiqas ew xwe ji vê meseleyê dûr bikin jî, ji ber ku di çarçoveya piştgirîdayîna HDP'yiyan de tê nirxandin, wek hevkarên HDP'ê ev mesele wan jî eleqedar dike. Yavûz Delal li ser vê mijarê wiha axivî:

"Ji alî hin kesayetên grîng ên HDP'ê ve piştgirîdayîna 'meşa xîretê' ya LGBTÎ'yiyan, di çarçoveya civakanasiya Kurdistanê ve, wek siyaset mînakeke kornêrîniyê ye. Ev yek jî bo siberoja HDP'ê û rêgeha siyaseta kurd a domînant cihê peroşiyê ye. Piştgiriya ku HDP'ê da vê meşê, ji alî çawanî û çimayî ve ji pêvajoya Gezî'yê re jî nehatiye dayîn. Ev rewş, di heman demê de ji bo oldarên ku derfet dîtine di lîsta HDP'ê de biçine parlamenê jî tê wateya blokebûnê û ev xeflet nayê îzahkirin. Divê HDP ji bo siberoja xwe ji vê rewşê feyz bistîne û dikaribe parlametên xwe bêtir kontrol bike. Ev daxwazî di heman demê de daxwaziya hilbijêrên HDP'ê ye jî. Wek polîtîk, mafê Hereketa Azadî ye ku ji vê siyaseta HDP'ê ya ku li kodên genetîk ên hilbijêrên kurd nagoncive sûd werbigire, lê belê ji ber ku ev şêwe siyaset li prensîbên tekoşîna maf, dadî û azadiyê ya Hereketa Azadî nagoncive, em siyaseteke wiha nameşînin û em ji bo bi kodên genetît ên kurdan neleyize em HDP'ê hişyar dikin. Lê belê devê ez vê yekê jî bêjim ku ev meyldarî di nav HDP'ê de jî meyldariyeke marjînal û lokal e"

Li ser bibîrxistina 'Hun dibêjin LGBTÎ'yî derî şêweyên jiyanê yên marûf in' jî Delal anî ziman ku pîvana marûfiyê kevneşopiya jiyan û teşeyên bizavî yên ku li ser qada şaristaniya xwe hatiye avakirin e û got: "Wek nimûne; 'meşa xîretê' ku di şaristaniya rojava de marûf e, bi şêweya ku li Tirkiyeyê hat lidarxistin, di çarçoveya kevneşopiyên şaristaniya me de ne marûf e"

**'Azadî bi çûna wan paqijtir dibe'**

Li ser angaşta ku 'ji ber têkiliya bi HDP'ê re hin kes ji Hereketa Azadî veqetiyane' jî Yavûz Delal diyar kir ku hebûna hin pirsgirêkan bûyera hereketa wan rave nake û dom kir: "Çûna hin kesên ku Hereketa Azadî baş tênegihîştine û îdrak nekirine ne veqetandin e, lewre têkiliya wan kesan û hereketê tenê li ser daxwaznameya endamtiyê meşiyaye û ev nayê wateya veqetandinê. Yanî di çarçoveya metna konseptê de pirsgirêkeke Hereketa Azadî tune ye. Tenê veqetandina hin kesên ku metna konseptê têneghîştine heye. Ji ber vê yekê ev veqetandin ji bo Hereketa Azadî tê wateya moxilbûyîn û paqijbûyînê"

**'Kurd ji bo armancên sereke HDP'ê tolere dikin'**

Li ser pirsa me ya ku di raya giştî ya kurd de rexne tê kirin ku HDP, ji daxwazên sereke yên kurdên ku meyldariyên wan ên neteweyî û olî hene bêtir enerjiya xwe li ser derdorên çepên tirk, LGBTÎ û hêmanên din ên marjînal xerc dike jî Delal anî ziman ku ger di raya giştî de rexne û îtirazeke wiha hebe, divê siyasetmedar vê peyamê baş têbigihîjin. Delal wiha got: "Li ser grîngîdayîna daxwazên siyaseta HDP'ê bêhevsengiyek heye û hilbijêrên Kurdistanî ji vê yekê haydar in. Mirov dikare li ser hilbijêrên kedkar ên HDP'ê jî vê yekê bibîne Lê belê em ji mêj ve dizanin ku kurd ji ber armanên xwe yên sereke vê siyaseta HDP'ê tolere dikin. Bi kurtasî; Divê HDP polîtîkaya xwe bi baldarî bimeşîne û hevsengiya profîlên hilbijêrên xwe piştguh neke û li gor daxwazên wan çalakiyan pêk bîne"

### Şewitandina pirêzeyan

# Cotkar mala xwe dişewitînin!

Wek tê zanîn li gelek deweran û bi taybetî jî li teştên Kurdistanê yên bê serûber di heyama paleyê de meriv dibîne ku li her derê dûkel û pêta agir ji zeviyan radibe. Piştî çinîna ceh, genim, garis û hwd cotkar û gundî demildest agir berdidin pirêzeyên xwe da kû zevî ji pûş û pelaxa nava erdan xelas bibe. Lê belê ew kevneşopiya xeternak dibe sedem ku hem dewlemendiya zeviyan têk biçe û hem jî bi dehan cûreyên sewal û kêzokên ku berhemdariya zeviyan berz dikin bişewitin û ax her lewaz bibe.

Li Bakurê Kurdistanê serçaviya herî mezin a ku xelkê Bakur pê debara xwe dika bêguman cotkarî ye. Lewre erda Bakurê Kurdistanê ji karê cotkariyê re guncîn e û li Kurdistanê bi dehan deşt û serçaviyên xwezayî yên avê hene. Her çend serçaviyên baş û bêhempa hebin jî ew ji hêla cotkaran ve tên tehrîbkirin ango tên rûxandin. Ev demeke dirêjê ku cotkarên kurd piştî çinîna genim, ceh û garisê xwe agir bera pirêzeyan didin û di encama wê şewitandinê de bi hezaran sewalên li ser axê tên kuştin. Li deştên Bismil, Qoser, Çinar, Riha û yên din Bakurê Kurdistanê her sal bi hatina havînê re û çinîna zeviyan re agir li pirêzeyan radibe û dûkel li deştan bilind dibe. Herwiha li gor zanyariyên pispor û endezyarên zîreetê ji bo axê xeternaktirîn tişt şewitandina pirêzeyan e û divê rayedar demildest dest biavêjin vê kêşeyê û vê qetlîama ku li bûneweran axê tê kirin bê bi dawîkirin. Li hêla din bêdengiya derdorparêzên Bakurê Kurdistanê jî dibe cihê nîqaşan.

**'Bûnewer tên qetilkirin'**

Endezayarê zîreetê û berpirsê şîrketa Tardemê ya li navçeya Qosera Mêrdînê Allatin Kılıç di derbarê kêşeyê de ji BasNûçeyê re eşkere kir ku gelek sedemên sûtandina pirêzayan hene lê belê ew dibînin ku hem rayedarên dewletê û hem jî cotkar ne di xema wê yekê de ne û xweza û ax bi tevikujî û qetlîamê re rû bir û dimîne. Herwiha Kılıç daxuyand ku ax jî bûnewerek e û dema ku ax tê şewitandin zemîn ser rûye erdê yê axê jî tê şewitandin û di wê zamîna li ser rûyê erdê de bi hezaran bûnewer hene û dema ew tên şewitandin wesfa axê ya hilberînê ji holê radibe û ax tê bê wesifkirin û eger wisa berdewam bikê ewê hilberîna axê ji holê rabe.

**'Tedbîrên heyî kêm in!'**

Her wiha Kılıç amaje bi wê yekê jî kir ku her çend ew li gundan digerin û ji cotkaran re dibêjin jî cotkar bi ya xwe dikin û pirêzeyan dişewitînin. Kılıç bal kişand ser xebatên walîtiyê jî û wiha berdewam kir: Walîtî her sal belavokan derdixe û dibêje; 'Pirêzeyan neşewitînin. Eger kî pirêzeya xwe bişewitîne ewê di derheqê wî de lêpirsîn bê vekirin.' Ev hişyariya walîtiyê baş e lê belê bi serê xwe têr nake û divê hin tiştên din bên kirin." Kılıç ragihand ku heta niha wan jî bi sedan belavokên nebaşiyên şewitandina pirêzayan belavkirine û ew gelek caran bi rayedarên dewletê re rûniştine da ku çareyekê ji vê yekê re bibînin.

**Xetere mezin e**

Kılıç pirsa me ya; gelo rê heye ku mirov wî pûşê pirêzeyan îstîfade biki? Û di hin waran de bi kar bîne? Jî bersivand û wiha berdewam kir: " Cotkarên me dikarin ew puşê li nav pirêzeyan bikin ka û bifroşin. Dikarin wî pûşî bidin febrîqeyan û bikin kaxiz. Dikarin bikin êmê sewalan û bifroşin. Eger nikarin wê jî bikin dikarin bi kelûpelên erdê wî pûşî hûr bikin û ji bo axê bikin gubre lê belê nezanîn bûye sedem ku hem xweza bê wêran kirin û hem jî axa Kurdistanê bê talan kirin."

Li hêla din Kılıç xeter destnîşan kir û eşkere kir ku eger şewitandina pirêzeyan berdewam be ewê êdî ax hilberînê neke û ewê li deştên berhemdar ên Kurdistanê cotkarî neyê kirin û temenê deştên berhemdar 30 sal maye.

**'Ajalên kovî tên şewitandin'**

Endezyar Tahsin Işıkê ku li ser tesîra şewitandina pirêzeyan a li ser xwezayê kar kiriye jî da zanîn ku raya giştî ya Bakurê Kurdistanê ne di hişayariya wê de ye û eger wisa berdewam bike ew ê ajalên kovî li Bakurê Kurdistanê nemînin û hevsengiya xwezayê biguhere. Işık wiha berdewam kir: "Bi şewitandina pirêzeyan re bi sedan ajal tên kuştin. Rovî, cûk, wawîk, mar, kêrgûh... ji hêlînên xwe derdikevin. Yan dişewitin yan jî direvin û dimirin." Işık bal kişand ser bêdengiya raya giştî jî û daxuyand ku ji cotkaran heye ku ew bi şewitandina pirêzeyan karên xwe hêsan dikin lê belê ew nizanin ku ew agir bera mala xwe didin û her çend ax li cem kurdan pîroz be jî wan dev ji vê parastin û lêxwedîderketinê berdaye û wê talan dikin.

**Em axa xwe dişewitînin**

Di berdewamiya axaftina xwe de Işık amaje bi wê yekê jî kir ku bi şewitandina pirêzeyan re madeyên azotê û karbonê kêm dibin û ew jî dibe sedem ku berhemdariya zeviyan kêm bibe û li Kurdistanê kêmasiya ceh, genim,garis rû bide. Her wiha Işık daxuyand ku bi şewitandina pirêzeyan re tesîra erozyonê jî zêde dibe û axa li ser rûyê erdê diber ba û avê re dihere. Işık xetere wiha dest nîşan kir: " Em axa xwe dişewitînin. Bêyi şewitandina pirêzeyan jî mirov dikare pûş ji nav axê derxe. Li welatên pêşketî kes bi vî awayî axa xwe naşewitîne."

**Divê hikûmet alikariya me bike**

Cotkarê ji Gundê Mejburiyê yê Qosera Mêrdînê Faruk Batırhan jî eşkere kir ku şewitandina pirêzeyan karê wan hêsan dike û her çend pispor û endazyar hişyariyê bidin wan jî ew pirêzeyan dişewitînin û dibin sedem ku ax bê şewitandin. Batırhan daxuyand ku her çend wan hewl daye ku pirêzeyan neşewitînin û pûşê li nav erdên xwe biqulipînin û bikin gubre jî kel û pelên qewî di destê wan de tune ne û divê rayadarên dewletê alîkariyê bidin wan da ku ew jî dev jî vî karî bedrin. Batırhan wiha domand: "Rast e em pirêzeyan dişewitînin lê belê weke din çareya me tuneye. Eger hikûmet alîkariya me bike û aletên baş bide me emê dev jî şewatê berdin. Lê ya rast hikûmet alîkariyê nake û dixwaze tiştên di destê me de hene jî ji me bistîne."



# Nanê tenûrê debara nan

Evîn Amed

Binemayeke jiyana kurd a keleporî jî bêguman nanê tenûrê ye. Tu kurdek ku di zarokatiya xwe de, birçîbûna xwe bi nanê tenûrê aşt nekiribe tune ye. Niha jinên Amedê bi vî qûtê xwarinê yê çanda kurd debara xwe dikin û vê keleporê li bajaran jî jîndar dikin. Mala Tenûrê ya ku Şaredariya Amedê li Taxa Hasirliya Sûrê ji bo jinan vekiriye, yek ji malên tenûrê yên Amedê ye. 719 jin sûd ji malê werdigirin û hin ji wan nanên xwe difiroşin û debara xwe dikin.



### Li bajaran nanê tenûrê dibe qûtê debarê

Digel ku jiyana bajarî gelek taybetiyên çandî winda dike, hin binemayên çandî hîn jî li ber xwe didin. Gava mirov li bajarekî Kurdistanê li marketên mezin ku wek kelehên kapîtalîzmê gefê li çanda kurdî dixwin digere, mirov dibîne ku li gel berhemên din ên bi ambalajên pirreng û çirîsokî pêçayî, nanê tenûrê jî hatiye rêzkirin. Li taxan, di nav avahiyên mezin û li ser avahiyan tenûrê û li ber wê jî jineke nanpêj heye. Ev yek nîşane ne ku çêja nanê dendûrê xwe li devê kurdan daye û kurd nikarin dev jê berdin. Êdî kapîtalîzm jî nikare destê xwe lê bike. Li ser sifreyên kurdan nanê tenûrê rê nade nanê firûnê. Ji ber ku her kurdekî, pê mezin bûye û ew êdî bûye nanê neteweyî. Nanê neteweyî yê ku ji bajarên Kurdistanê siwarî otobas û frokeyan dibe, diçe heta bajarên derveyî welêt û kurdên wan bajaran jî têr dike.

### Li taxa xizan denûrên jinan

Li Taxa Hasirliya Sûrê ya Amedê, bi kuçeyên zirav û direj û bi avahiyên kevnar dagirtî, taxeke gelekî xizan e. Bi gelemperî mêr karkeriyên avahiyan dikin û zarok jî dikevin kolanan simît û şîraniyan difiroşin. Jiyaneke gundewarî tê de serdest e, lewre gelek gundiyên derdorê koçî vê taxê kirine. Navenda Lêkolîn û Sepandina Pirsgirêkên Jinan a Amedê (DÎKASÛM) ya Şaredariya Parêzgeha Amedê li vê taxa ku encamên neyênî yên valakirina gundan jê baş tê dîtin, Mala Nanê Tenûrê vekiriye. Ji sala 2003'an û pê ve jinên taxê li vê derê, nanên xwe dipêjin. Di nava salekê de 1719 jin, sûd jê werdigirin. 6 jin jî ji bo debara malên xwe, nanên xwe li erebokan bar dikin û zarokên wan li kolanên Deriyê Çiyê û Balikçilarê difiroşin..

### 'Rojê 60-70 nan difiroşim'

Dayîkeke bi navê Siltan ku di kelakela havînê û rojiya remezanê de hatibû ser tenûrê û nan çêdikir got ku; "Ez roja 60-70 heban difiroşim û debara mala xwe pê dikim. Mesrefa mala xwe dikim, pê şîva xwe çêdikim, pê nanê xwe çêdikim û mesrefa mala xwe dikim. 5 zarokên min hene û mêrê min jî firaqşo ye. Ji bo me ev kar gelek baş e" Jineke din jî got: "Nanê me baş tê firotin. Lê belê carinan qet nayên frotin û zarok nanên xwe tînin malê. Ev kargeh ji bo me pir baş e û em pê debara xwe dikin, zarokên xwe xwedî dikin, zewzeyên xwe distînin û xwarinên xwe çêdikin" Dayîka Siltanê jî anî ziman ku gelek jin vê tendûrê bi kar tînin lê yên 6 jin jî nanê xwe difroşin. Her wiha dayîkan got ku hin jinên vê taxê li malên xwe jî nan dipêjin û bi rêya şaredariyê difiroşin marketên mezin. Lê ew nanên xwe bi xwe difiroşin. Her çiqas têr neke û nan bi rêkûpêk neyê firotin jî, ji tunebûnê çêtir e. Xuya ye ku heke firotina nan bi rêkûpêk bibe wê hin çêtir bibe. Lewre dayîk xasma gazinê dikin ku carinan nayên firotin û zarok nanê wan vedigerînin malê.




### 'Debara me tenê bi nanê tenûrê ye'

Yek ji wan jinên ku ji Mala Tenûrê sûde werdigire got: "Hevserê min naxebite. Ji ber vê yekê em debara xwe bi frotina nanê tenûrê dikin. Kurekî min li bazara penêr emeletiyê bike jî ev têra debara me nake. Bi saya frotina nanê dendûrê em dikarin debara xwe bikin. Bi pereyên ku em ji nan qezenc diki, el hem mesrefa mala xwe dikim hem jî pê arvan, xwê, rûn û hevîrtirşê nan dikirin. Jiyana me pê dimeşe. Heta niha min gellek nan frotine. Dibe ku min 40-50 tûrik nan firotine. Lê belê carinan zarokên min jiber ku nayê frotin, hemû nanên xwe tînin malê. Zivistanê û rojên sar ên bihar û payizê nan pir nayê frotin. Lê havînan karê me baştir e. Di meha Remezanê de ji ber ku hemû kes grîngiyê dide xawrina fetariyê nanên me xweş têne firotin. Ev yek rûyê me dikenîne. Lê belê ev pereyên ku em ji freotina nan qezenc dikin tenê têra pêdiviya me ya rojane dike û ji berê namîne. Em rojane 20-25 lîre qezenc dikin. Ev jî tenê têra debara malê dike. Heke roja din neyê firotan em wê rojê birçî û naçar dimînin. Em malbateke pirnefer in; 6 zarok ez û bavê zarokan. Dîsa jî ji tunebûnê çêtir e."

### Beravxane jî vebûne

Weke ku tê zanîn êdî dezgehên kurd, bi rola jinan a geşedan û pêşveçûna civakê de hesiyane û li gor vê qebûlê xebatan dimeşînin. Ji bo jin dikaribin beşdarîkirina jinan li jiyana hilberandinê didin. Şaredariyên di destê kurdan de û sazî û dezgehan gelek xebatên berbiçav li ser vê yekê dikin. Polîtîkayên li ser jinan wek girîngtirîn şaxên sazî û dezgehan ji hêla dilxwaz û xebatkarên jina ve tên meşandin. Yek ji wan saziyan jî Şaredariya Amedê ye ku gelek sazî ava kirine û polîtîkayên xwe bi rêya wan saziyan bi cih tîne. Bi vê hilkeftê yek ji saziyên ku hewldana geşedan û pêşveçûna jinên kurd dike, DÎKASÛM'a bi ser Şaredariya Amedê ye ku Mala Tenûrê li dar xistiye û wê kiriye Şaxa DÎKASÛM'ê. Berpirsiyara Mala Nanê Tenûrê Guneş Gezgin qala DÎKASÛM û Mala Tenûrê kir û got: "DÎKASÛM di sala 2002'yan de hat damezirandin û di sala 2004'an de di bin banê pêşnûmeya beravxaneyan, li taxên Hasirli, Benûsen û Yenîkoyê xebatên xwe dimeşîne. Ji ber ku malbatên destteng nikarin cilşoyan bikirin, me jî xwest ku bila jin di van beravxaneyan de cilên xwe bi rehetî bişon. Digel vê jî bila wextên xwe yên vala li van deran derbas bikin û her wiha zarokên wan jî bila li van deran perwerde bibin." Guneş Gezgîn diyar kir ku tenê li taxa Hasirliyê Mala Tenûrê heye û Hasirli bi biryara meclîsa Şaredariyê bûye Şaxa Gerînendetiya DÎKASÛM'ê. Her wiha Guneş Gezgîn got ku her hefte nêzîkî 50 jin ji Mala Tenûrê sûde werdigirin û aniha 6-7 jin jî bi mebesta alîkariya debara malên xwe nanên xwe difiroşin. Li ser nebirêkûpêkbûna firotina nanê wan jî Guneş Gezgîn wisa got: "Beriya 2 salan me bi Şaredariya Sûrê re xebateke hevpar meşand. Her jinekê, rojê 70-80 nan dipêjand û Şaredariya Sûrê jî ew nan ji wan disitendin û difirote marketên herêmî. Ev yek ji bo jinan hêsaniyekê peyda kir. Lê mixabin bi Gerînendetiya Çandiniyê ya Bajêr re ji ber hîjyenê pirsgirêkek rû da û ev xebat hat sekinandin." Guneş Gezgîn di dawiya axaftina xwe de anî ziman ku ji bilî beravxane û Mala Tendûrê, ew xebatên perwerdehiyê jî didin meşandin. DÎKASÛM û Gerînendetiya Şaxa Lêkolîn û Perwerdehiyê bi hev re, ji bo karmendên xwe, di derbarê mijarên 'Regeza Civakî' û 'Tendurustiyê' perwerdehiyê didin.



# Heseniko qûrban, çemê Muradê limin, limin...



Mehmet Gültekin



Çemê Muradê wek çavkaniya herî mezin û dirêj ê ava verxwarinê bo mirov û ajalan li herêma Serhedê dize û dikişe, ew ne tenê avên ji deşta li ber çiyayê Tendûrekê heta Kebanê diherikîne, ew bi xwe re bîranînên evîndarên bextewar, wisa jî yê bêmirazan wargeh bi wargeh, ji ber gund û bajaran re digerîne û dibe tev Feratê dike. Hesenîk û Asê ciqas bi hevre bi dilînî girêdayî bûn, Çemê Muradê jî ewçend di zarê diladar û dengbêjan de bi destana wan ve girêdayî ye.

Di heyamên kevnare de fsûriyan bi navê frsaniya qala wê kirine, di hin çavkaniyan de jî wek Arsanias derbas dibe û dîrokzan Moses von Khorene jî di sedsala 5 an de balê dikşîne ser navê Murts ku gelekî dişibîne navê Muradê. Rêwiyên sedsalên bihûrî jî di bîranînên xwe de salixê wê wek Çemê Muradê an jî pir caran bi navê milê rohilatê a Feratê dane û gelek taybetiyên wê şirove kirine.

Wargeha malbata Asê gundê Şiraz li ser qeza Kopê ya bi ser Mûş ye, gundekî şên, bi dar û ber e. Asê hin di dergûşê de bûye sozdara Hesenîk. Di hin şaxên kilamê de dengbêj dibêjin; "Kur kurmanc e, keçik Dumilî ye". Kilama Hesenîk û Asê ji aliyê hemû dengbêjên li seranserê Serhedê de hatiye stran û bi sal û zemanan li ser du şaxên bingehîn avabûye. Ji wan şaxan di ya ku ji aliyê Prof. Ordîxanê Celîl û Celîlê Celîl de di sala 1956'an de ji zarê Etarê Şero hatiye berevkirin de zêdetir agahî û nîşanî derbarê kesayetî û bûyerên heyama destanê hatine salixdayîn.

Ji ber ku Malbata Hesenîk destteng bû, ew di xortaniya xwe de berê xwe dide Kela Elaşgirê û dibe xulamê sîwariyê Memed Begê. Memed Beg di çavkaniyên dîrokî û her wisa jî di zargotina me de wek Surmelî Memed Paşa mîrê sancaqa Elaşgirê û kurê Behlûl Paşa ê mîrê herêma Bazîdê eyan e. Çewa Şerefxanê Bidlîsî neqil dike, ev malbata ku bi eslê xwe ji herêma Silîvan bûye di şerê salên 1577/78'an yên di navbera osmanî û îraniyan de ji wir koçberî Bazîdê bûne. Em piştre ji çavkaniyên rêwiyên Awrûpî û ji arşîvên osmanî jî agahdar dibin ku serwerên ji vê malbatê ji wê demê pêde serweriya vê herêmê kirine.

Hesenîk ji ber zîrektî û camêriya xwe ji aliyê Memed Begê û hemû xulamên wî de gelek hezkirî bûye. Hesenîk riya bi qasî roj û nivekê ji gundê dilketiya xwe Asê bi dûr ketibû, divê rojekê vegeriya wir û bi sozdara xwe re bizewiciya. Li heman navçeyê Sedûm Beg xwedanê pênc gundan û kurapê Memed Begê bû. Rojekê riya wî bi gundê Asê dikeve û dibe mêvanê mala bavê wê. Dema ew li wir Asê dibîne, aqil ji serê wî diçe û di cîh de dibe aşiqê wê. Sedûm Beg Asê ji bavê wê dixwaze, lê ew dibêje ku sozdarê wê heye bi navê Hesenîk, kîjan xulamê kurapê Sedûm Begê ye.

Dilê Sedûm Begê ji wê rojê pê de bi evîna bo Asê re dişewite, lê ew ji gelek mirovan dibihîse ku kula dilê Asê tenê Hesenîk e û her roj kilaman li ser wî distirê. Sedûm Beg rojekê bangî Asê dike û dixwaze ku ew ji wî re kilamên xwe ên li ser Hesenîkê bistirê, ew jî bi eşq û dilpakî bendekê li pey yeke din distirê. Agir dikeve dilê Sedûm Begê û ew wê bi xwe re dibe ber çemê Muradê ku jê derbas bike û bişîne mala bavê wê. Li wir Asê dîsa kilamên ku avêtibû ser Hesenîkê xwe dilorîne. Di nava çêm de, li cihê ku av zêdetir rabûye Sedûm Beg Asê davêje nav pêlên wê û ew tê de rode dibe û dixeniqe.

Sedûm Beg piştre bi wê hêrs û rikê berê xwe dide kela Memed Begê û ji xulaman dixwaze ku Hesenîk ware, wekî şixulekî wî bî wî re heye. Dema xulam diçin ku bangî Hesenîkê bikin, Memed Beg pêdihese, şikê dibe vê lez û beza Sedûm Begê û nahêle ku Hesenîk biçe cem wî. Piştî çendekê Hesenîk destûrê ji Memed Begê dixwaze û ji Elaşgirê bi dûr dikeve, diçe ji Ebexê derbas dibe û li aliyê Îranê dibe xulamê Taharxan ê Qeleniyê. Dema di navbera Taharxan û Huseyn Begê Takorî de şer diqewimin û Sedûm Beg jî beşdarî van şeran dibe, Hesenîk şopa Sedûm Begê digerîne û wî dikuje.

Di rastiyê de jî Taharxan û Husêyn Begê Takorî du kesayetiyên dîrokî nin. Ji agahiyên çavkaniyên dîrokî û ji zargotina kurdî diyar e ku bi rastî jî ev herdu mîr di nîvê duyem a sedsala 19'an de jiyane. Tahirxan ji eşîra Heyderan ji Mala Şero bû, li Qeleniyê dima û mîrekî xwedî herêmeke mezin û eşîreke giran bû. Husêyn Beg jî wek serokê eşîra Takoriyan û yê alayên Hemidiyê li qeza Mehmûdî ya li ser sînorê Îranê dima.

Ji salên 1890 heta 1900'î di navbera herdu seriyan de gelek caran şerên giran qewimî bûn. Ji xwe dengbêj jî di dawiya salixadayîna xwe ya derbarê Hesenîk de dibêje ku, ew heta sala çardehê ango 1896/97'î li Qeleniyê bûye û gelek kesan ew li wir dîtine.

Ji bilî vê di hin şaxên kilamên Hesenîk û Asê de navê Riza ê ji Qasimiyê jî derbas dibe. Qasimî gundekî Milazgira Mûşê bû, Riza jî di wan salan de wek mîrê eşîra Hesenan serokê alayê Hemîdiyê bû. Rizayê Xêlit di destpêka sedsala 20'î de di pêvajoya nakokiyên di navbera wî Osmaniyan de ji aliyê dewletê bi jehrdayîne hat kuştin. Dîsa navên cîh û waran yên weke Şîraz, Memanî, deşta Mêxikê û Qasimî jî yên cîwarên heman herêmê nin.

Kilamên Hesenîk û Asê berdilkên piraniya dengbêj û bilûrvana bûn. Hin di salên 1930'î de ev kilam bi dengê Meyremxanê li Îraqê hatibû tomar kirin û bi destpêka weşana Radyoya Bexdayê ve li seranserê welat belav bû. Di radyoya Rewanê de jî çend şaxên wê hatin weşandin ku ya bi dengê Girabêtê Xaço li piraniya guhdarvanan diyar e. Ev şax her wisa bi dengê hunermendên eyan û navdar Şivan Perwer, Nilüfer Akbal, Aynur Doxan, Leyla Xan û yên mayîn di nava nifşên nû de jî gelek belav bû û hat ecibandin.

Çewa ji aliyê naverok her wisa ji aliyê melodiyên wan de jî şaxên kilama Hesenîk û Asê gelekî nêzikî hevdu nin, di wan de hestên hunermendan û a civakê bi ahengdarî li hev hatine. Êdî rih û can hatiye xuşîniya ava çemê Muradê, ew bi deng û peyvên Asê ve xwe berdine guhên mirovan. Di kilaman de bûyer gelek caran bi awayekî veşartî hatiye ziman, Çemê Muradê wek sembola hemû astengiyên li pêşiya mirazê gihîştina hevdu ya herdu aşiqan hatiye şirovekirin. Dengbêj Asê li alîkî çem û Hesenîk jî li aliyê din daye runiştin, di vê rewşa bêçare de kelekvan wek motîfeke gerdunî guhdarvanên melûl ji hêviyê jî bêpar nahêle.

*Hesenîko qûrban, çemê Muradê leme-leme*
*Kelekvano, bi bextê Xwedê, bextê te me*
*Tu Hesenîkê min derbas bike*
*Ez kefîlê heqê te me*
*Delîlê Asê.*

## Bûka Baranê

# Xelata biçûkên Ehmedê Xanê

Emînê Badikî

Di warê weşangeriya kurdî de dibe ku kêmasiya herî mezin keresteyên ji bo perwerdehiya zarokan be. Lewre kurdî hîn jî nebûye zimanê fermî û perwerdehiyê û pêdiviyeke giştî jê re peyda nebûye. Lê weke ku tê zanîn zimanek xwe li ser koka zimanên zarokan şîn dike. zimanên siberojê ew ziman in ku zarok pê daxivin, difikirin, dileyzin, digirîn û şa dibin. Di qada weşangeriya kurdî de jî êdî grîngiya vê rewşê baş tê têgihîştin û hêdî hêdî li ser vê yekê hewldan zêde dibin. Yek ji wan hewldanan govara wêje û perwerdehiyê ya zarokan a bi navê Bûka Baranê ye.

**2 sal û 5 hejmar perwerdehiya zarokan**

Govara Bûka Barane, di bihara 2013'an de, bi pêşnûmaya xwendevanên Zanîngeha Dîcleyê dest bi weşanê kiriye. Kovar feyza xwe ji "Nûbihara Biçûkan" a Ehmedê Xanî ku yekem berhema perwerdehiyê ya zarokan a bi kurdî ye û bi berhevkirina kelûporên perwerdehiyê hatiye xemilandin. Piştî şêwira bi Komel Kurdî ku ew jî li ser wêje û perwerdehiya zarokan dixebitin û bi danûsitandina kereseteyên Komel Kurdî û ên di destê 3 jinan de Bûka Baranê bi awayekî fermî dest bi weşana xwe kiriye. Bûka Baranêye ku ji sala 2013an heta niha 5 hejmarên xwe derxistine, bo hejmara 6emîn hemû keresteyên xwe amade kirine lê ji ber pirsgirêkên aborî hêj neçûye çapê û nikare bi awayekî periyodîk çap bibe.

**Wêje nehatiye jibîrkirin**

Şêwirmendê govara Bûka Baranê Kenanê Nado derbarê naveroka vê kovarê de got ku me di serî di bi hevalan re biryar da ku kovar hem wêjeyî be hem jî kovara perwerdehiyê be, ango bila ne tenê wêjeyî be lewre estetîka wêjeya zarokan di wêjeya kurdî de çênebûye, sedema vê jî di dibistanan de perwerdehiya wêjeya zarokan nayê dayîn. Her wiha Nado diyar kir ku perwerdehî qadeke piralî ye û tê de matematîk heye, biyolojî, muzîk, ziman û hwd. hene, me jî xwest ku peyderpey em van mijaran têxin nav kovarê, bo nimûne em carinan navdarên kurd didin nasîn, bi karaktera bi navê 'Gulgerok' danasîna bajarên Kurdistanê dikin, her wiha bi çîrok, helbestên resen ên zarokan, xaçerêzên mentiqî û xaçepirsên mentiqî, rûpelên boyaxkirinê em kovara xwe dixemilînin û naveroka wê dikemilînin.











**'Wêjeya zarokan, wêjeya xeyalperestiya zarokan e'**

Wêjekar li ser binavkirina beşên wêjeyê nîqaşan dikin. Hin dibêjin pêwîstî bi navlêkirinên taybet ên wekî 'wêjeya zarokan' an jî 'wêjeya jinan' tune ye. Li ser vê nîqaşê Kenanê Nado ramanên xwe wiha vedibêje: "Bi raya min wêje, ji nav bêtir naverok bixwe ye. ji ber vê jî çîrokeke bi çavê zarokan û bi zimanê wan, bi kelecan û xewn û xeyalên wan hatibe gotin, ew dibe çîroka zarokan. Navlêkirina wêjeya zarokan jî ji vir tê. Di wêjeya devkî ya kevneşop a kurdan de jî wêjeya zarokan cihê xwe girtiye û di şevbihêrkên dirêj de kurd, ji bo zarokên xwe çîrok, çîrvanok, zûgotinok, gumanokan vedigotin û ev çand di nav kurdan de çandeke gelemper bû. Ev wêjeya devkî, wêjeya klasîk a zarokan bû. Di destpêka wêjeya nûdem a kurd de jî çêja van şêweyên wêjeyî heye. Kamûran Bedir-Xan, di berhema xwe ya bi navê "Dilê Kurê Min" de helbestên zarokan nivisandine û wan helbestan li gor cîhana zarokan sêwirandiye ku tê de welatheżî, kurdewarî, alahezî jî hene lê bi mentiqa zarokan. Her wiha dîwaneke Fêrîkê Ûsiv a bi navê "Pampa Min" heye bo zarokan helbest nivîstandine. Ji bilî van, govarên bi taybetî ji bo zarokan hatine amadekirin jî hene ku dîroka wan kevin in. Li Rojhilata Kurdistanê di sala 1946'an de kovarek derketiye ku nimûneyeke serbixwe û bêhempa ye bo wêjeya zarokan. Her wiha kovarên Hawar û Gêlawej jî di nav xwe de ji bo zarokan gelek materyalên modern jî dihewandin û biserketî bûn û her ku diçe ev tradîsyon dewlemend dibe. Bi taybetî da ku perwerdehiya fermî a zarokan heye, li Başûr bi sedan kes helbest û çîrokên zarokan dinivîsin. Xulase, em dikarin bêjin digel ku ev kesereste têrî her çar perçeyên Kurdistane nake jî hewldanek heye."

**Bi govaran perwerdehî ne pêkan e**

Kenanê Nado diyar kir ku ew di govarê de rastiya jiyanê nîşanî zarokan didin lê ne bi şiretê çimkî ev ne durist e, lê bi rêya nîşandana çewtî û rastiyan berê zarokan didin rastiyê. Her wiha Nado diyar kir ku şaxên zanistî ên gerdûnî ku rêzikên wan hene ew bi zimanê zarokan bingeh ji wan re ava dikin. Nado bale kişand li ser girîngiya perwerdehiya bi zimanê zikmakî û got ku heya kurdî nekeve nav çerçoveya perwerdehiya fermî, bi kovarek du kovaran, bi pirtûkek du pirtûkan perwerdehiyeke bi rêkûpêk û bi pisporî ne pêkan e, heke di dibistanan de perwerdehiya bi kurdî bi awayekî fermî destpê bike wê çxê em dikarin bibêjin kovara Bûka Baranê dê gelekî alîkar bibe û wisa domand: "Zarok li aliyekî hînî zimanê xwe bibin li aliyekî din jî tama estetîka zimanê xwe bistînin. Tiştê ku me dîtiye û bihîstiye ev e ku hê jî zarokên kurd nikarin bi serê xwe kurdî bixwînin. Kirîyarên Bûka Baranê ji ber van sedeman vê kovarê distînin: Hinek dibêjin bila ev govar bêxwedî nemîne û alîkariya me bigihîje wan, distînin hinek jî distînin da ku ji zarokên xwe re bixwînin û di zarokan de hişyariyek li ser kurdî çêbibe. Mixabin ne ku ev kovar di perwerdehiya zarokan de bi cih bûye ku di rastiyê de peywira wê ev e.

**Kanalên zarokan ji cîhana zarokan re biyan in**

Weke ku tê zanîn di wan demên dawîn de televîzyonên kurdî bo zarokan zêde bûn. Aniha televîzyonên wekî Pêlîstank TV, Kurdmax, Pepule TV, Zarok TV, hene ku bi kurdî weşanê dikin. Kenanê Nadoyî ev televîzyn nirxandin û anî zimên ku a ku medyayê dixwemilîne, wêje bixwe ye û wêje zêdetir estetîka xwendinê di zarokan de çêdike û zarok pê zimanê xwe pêş dixin, medya jî ji ber ku bandora wê li ser zarokan belkî ji wêjeyê zêdetir bandor li zarokan dike, ango ji aliyê estetîk ve xwendin pêş e, ji aliyê bandorê ve jî medya pêştir e û wisa dom kir: "Kanalên kurdî ên zarokan jî heta niha li gor rabûn û rûniştina kurdan, li gor karakterên kurdewar rêzefîlmeke resen ji aliyê şîrketên kurdan ve ne hatiye amadekirin. Rast e çar pênc kanalên me hene lê bes bernmeyên dûblaj û rêzefîlmên dûblaj çêdikin. Em dibînin ku li gundên asê ku çanda tirkan bi hêsanî nikare bikevê zarok hê 5-6 saliya xwe de hînî tirkî dibin ku bes bi rêya televîzyonê ev tişt pêk tê. Ji ber vê jî ne tenê ziman, karakter û çanda vê empozebûna çanda kurdî hê gelekî paş de maye."

**'Weşandina vê govarê fantazî ye'**

Nado, da zanîn ku aniha tîraja vê kovarê 1000 e û mixabin ji vî hezarî bes 500 heb diçin ber destê zarokan û piraniya wan, li vê govarê dinêrin, wêneyên wê dinêrin, rengan, tîpan dinêrin,boyaxan dikin bes naxwînin çimki nikarin bixwînin û fahm nakin, an jî dê û bavên wan ji wan re dixwînin. Nado bale kişand ku li gor realîteya hêyî em dikarin bibêjin ku derxistina vê kovarê fantaziyekê ye, ji ber ku prewerdehiya me tune. Nado bang li dewlemend û karsazên kurd kir û got ku li şûna zikat û xêratên xwe dikarin van tiştan finanse bikin û xwedî li wan derkevin. Ev xizmet bes bo zarokên kurd û zimanê kurdî ye.

## Ümit Demir:

# Erebesk xerabmalî ye

**Mehmet Emin Kan**

Wek hemû mûzîkjenên kurd Ümit Demir jî li dij bêderfetiyan têkoşiya da ku kevirekî deyne ser dîwarê baxçeyê muzîka kurd. Demir, balê dikêşîne ser nîqaş û rexneyên li ser muzîka kurd û kanalên muzîkê yên kurd û ji destpêkê heta îro serpêhatiya xwe ya beşdariya qada muzîkê bi me re parve kir û rewşê vegot: “Êdî gellek kanalên muzîkê yên kurd hene û bi hezaran klîp têne kêşan û weşandin. Ev rewş ji bo gellek muzîkjenên kurd derfetên nû jî diafirîne. Lê belê ev rexş di himan demê de şayanî rexneyên tûnd e jî lewre, ev zêdebûn di heman demê de li ser çawaniya muzîkê bandoreke neyînî jî dike.”

**‘Di bin nîrê faşîzmê de tembûr bû rêhevala min’**

Muzîkjen Ümit Demir ku ji piçûkatiya xwe ve bi muzîkê ve elaqedar e û niha bi awayekî profesyonel muzîkjeniyê dike behsa serpêhatiya muzîkjeniya xwe kir û got ku di dibistana navîn de wî di şahiya dibistan û dawetan de wek amator dest bi muzîkê kiriye, pişt re bo xwendina zanîngehê çûye Çanakkaleyê lê li wir ji ber ku kurd bûye gelek zehmetî kişandine û tembûra ku hevalekî wî diyarî wî kiriye jê re bûye rêheval û pişt re jî dev ji Zanîngeha Çanakkale On Sekiz Martê berdayê û berê xwe daye Wanê û li Zanîngeha Wanê fakulteya Îktîsadê qedandiye û di sala 2004an de êdî bi awayekî profesyonel bi muzîkê re mijûl bûye. Ümit Demir aniha di kafeyan de, di dawet û konseran de jî hunera xwe dide der. Demir, qala xebatên xwe kir û got ku albûmeke min a bi navê “Agirê Evînê” heye ku 3 klîbên wî jî hatine weşandin, beşdarî bernameyên televîzyon û radyoyan jî dibe û di dawetan de, kafe û konseran de jî beşdarî bernameyen dike û diyar kir ku di fikra wî de strana bi navê “Lo Berde” ku bi eslê xwe sitraneke kurdî ye wergerînin bo ermenkî û tirkî.

**‘Goya hunermend tenê muzîka arabesk çêdikin’**

Ümit Demir rewşa muzîka îroyîn nirxand û got ku muzîka kurdî niha di bin xetereya dejenerebûnê de ye û rêza gelek hunermendên xas ên kurd nayê zanîn û qîmeta ku heq dikin nayê nîşandan. Her wiha Demir bale kêşa ser televîzyonên goya bi kurdî ne ku her roj stranên kurdî bi niyeteke xirab bi kar tînin û ew mirovên ku qet elaqeya wan bi muzîkê re tune ne wek muzîkjen tên hesibandin û gava hinek pere berhev dikin û klîban çêdikin û pê re jî kêmasî û lawaziya mirovan îstîsmar dikin. Demir anî ziman ku li aliyekî zêdebûn û belavbûna kanalên muzîkê ên kurd, ji bo kurdan û muzîkjenên kurd destkeftî be jî, çawaniya wan xirab e û dom kir: “Gelek caran hin kanalên muzîkê gazî min dikin, lê belê ez naçim. Çimku em baş dizanin ku ger em beşdarî kanalên bê kalîte bibin em ê çavên mirovan bikevin. Ew bername bi piranî li pey şopa çanda populer diçin û ji bo berjewendiyên aborî hatine avakirin. Em jî dixwazin biçin bernameyên baş, lewre medyaya dîmenî û civakî ji bo me şert e û niha em tenê ji medyaya civakî sûde werdigirin.”

**‘Muzîka kurd her xwe dûbare dike’**

**Ümit Demir li ser rexneya** xwedubarekirina muzîka kurd jî got: “Pêdivî bi rexneyê heye, lewre hilberandin tune û muzikjen tim stranên kevin tînin ber hev, ew bi heman rîtm, newa û şêweyan dûbare dikin. Divê mirov ji stranên kevin jî sûd werbigire, lê belê di heman demê de divê bê zanîn ku tevlîhevkirina amûrên muzîka rojavayî û ya kevneşopî, wê muzîka kurd bi pêş ve bibe. Lê pêwîst nîne ku mirov beyî afirandinê heman stranan dubare bike. Ev yek ji bo muzîka kurd xerabmalî ye. Mirov hez dikin ku muzîkên nû jî guhdarî bikin. Ne tenê kurd, neferên ji gelên din jî muzîka kurd guhdar dikin û qelîteyê dişopînin.”



**‘Divê wek amûr jî muzîk pirreng be’**

Demir, li gel destnîşankirina grîngiya amûrên klasîk, divêtiya zêdekirina cûreyên amûran jî anî ziman û dom kir: “Bê guman amûrên gelêrî ên wekî blûr, tembûr û hwd. bingehên muzîka kurd in. Lê belê bi raya min divê muzîk bi van amûran neyê sînorkirin. Divê bi bikaranîna amûrên din yên biyanî jî şêweyên muzîka kurd bêne nûkirin, lewre muzîka ku tenê bi amûrên herêmî tê afirandin, wê tenê ji aliyê kurdan ve bê guhdarîkirin û eger muzîka kurd bi amûrên din rengeke nû bigire, wê gavê wê ji aliyê herkesî ve bê guhdarîkirin. Divê em bi amûrên nû, bi gotinên nû şêweyên nû bi dest bixin. Tiştê ku herî zêde min xemgîn dike arabeskbûna muzîka kurd e. Ji ber ku muzîk gerdûnî ye, gelek kes beyî ku gotinên wan têbigihîje, stranên bi îngilîzî û frensî guhdarî dikin, lewre rîtm an newayên wan stranan ji wan re xweş tê. Lê belê egereke pir lawaz e ku yekî biyanî bibêje ‘Ez ji filan hunermendê kurd pir hez dikim û beyî ku têbigihîjim, guhdarî dikim.” Demîr pêwîstiya ramana gerdûnî li ser muzîkjenên kurd wek pêwîstî nirxand û zêdebûna guhdarvanên muzîka kurd bi hilberandinê re têkildar kir. Demîr wiha dom kir: “Bi vî awayî wê di warê aborî de jî hêza hunermendan zêde bibe û wê hunermend dikaribin tiştên baştir biafirînin. Wek nimûne; Çawaniya studyo, muzîkjen û amûran di çawaniya muzîkê de pir diyarker e û ji bo van tiştan jî fînanseke baş pêwîst e. Hem di warê aranjeyê de hem jî di warê mîx û masterîngê de, di her warî de wê çawaniya muzîkê cuda bibe û pê re jî wê baldariya mirovan zêde bibe. Hunermen Rojda, vê şêweyê di straneke Şakiro de azmûn kir û pir serkeftî bû.”

**‘Muzîka me awêneya wêjeya me ya devkî ye’**

Ümit Demir anî ziman ku muzîka kurd awêneya wêjeya devkî ya kurd e, ji ber vê jî ji kevneşopiyê veneqetiyayey deriyê wê ji nûjeniyê re jî vekirî ye û ger ku kevneşopiya mûzîka kurd nûjeniya gerdûnî jî hembêz bike, wê girseya xwe hin berfirehtir bike û li cîhanê navdartir bibe. Demîr afirînerên



mûzîka kurd ên wek Mistefa Gazî'yê bi nasnav Seyda jî bi bîr anî û wiha qala hevnasîna xwe û Seyda kir: “Min navê Seyda ji strana ‘Xerîbim’ bihîstibû, lê hevnasîna me bi saya Şoreş Devrîm Açıkgöz pêk hat. Ez çûm Amedê cem Seyda. Di maleke kevin de, dezgeha wî ya pirtûkan hebû, min xwest ez çend pirtûkan bistînim lê wî ew pirtûk diyarî min kir. Mirovekî pir nefsbiçûk bû. Dema ku min xwe jê re da nasîn, ji min re got, ‘Ger pêwîstiya te bi alîkariyê hebe, ez ê alîkarîya te bikim.’ Wê demê ez têgihîştim ku mirovekî sekna wî û ramana wi cuda ye. Yên ku ji muzîka kurd re, ji huner û hunermendên kurd re alikarî dikin pir kêm in ku Seyda yek ji wan e. Hunermendekî rast û nivîskarekî heja yê zimanê kurdî ye.”

**‘Agirê Evînê” di sala 2014'an de pêket**

Di derbarê albûma xwe ya ‘Agirê Evînê’ de jî Demir ragihand ku ew ji albûma xwe pir ne hêvîdar bûye, lê belê piştî derçûye rastî eleqeyeke mezin hatiye. Demir got: “Hinek ji min re dibejin em albûmeke cuda guhdarî dikin. Çêjeke wê ya cuda heye. Albuma min ji neh stranan pêk tê. Dû stran wek gotin û mûzîk diyariyên Seyda nin. Dûyên din jî yên Harun Ataman in.